12

سیاسەتمەدارێکی نەرویجی:

## گۆران نەوەی نوێ تێرناکات



## *Stêrkek kurdî li asmanên Swedê geş dibe*

9



Hejmar / Nr. 148
24 Gulan / Mai 2012

ROJNAMEYA KURDÊN DIYASPORA

# Rûdaw

ÇAPA EWROPA

**Deutschland 1,50 Euro** | Österreich 1,50 | Belgium 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Norway 15 NOK | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

# Dersên tirkî qebûl nakin!

Wêne: DIHA

Bavekî kurd li hemberî sîstema perwerdeyê ya Tirkiyeyê serî hildaye. Ev deh sal in ku ew zarokên xwe li malê bi kurdî perwerde dike: **“Heta ku zarokên min bi kurdî neyên perwerdekirin, ez wan naşînim dibistanê.“**

4





## *Koma Dîlan* nûnera Kurdan ya karnevalê ye

9

Nivîsa Mihemed Emîn Pêncwînî

## *Başûr û Bakur... ...rêyek ji bo yekbûnê*

12 / 13











Nûçe, raport û hevpeyvînên taybet. Herroj, 24 saetan.

Rûdaw.net

www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

# Dadgeha alman cezayên giran dan kujerên Arzûyê

**Detmold (Rûdaw) -** Doza kuştina keça kurd Arzu Ozmenê di dadgeha eyaletê de bi dawî bû û cezayên giran bo endamên malbata Ozmenê hatin birîn. Birayê Arzuyê, Osman Ozmen cezayê girtîgehê yê heta hetayî stand, Şêrîn û Kirer Ozmen 10 sal, Elvis û Kemal Ozmen jî 5 sal û nîv cezayê girtîgehê standin.

Arzu Ozmen şeva 1ê Mijdara 2011yê, dema ku ligel hevalê xwe yê alman Alexander K. (20) dima, ji aliyê xwişk û birayên xwe Osman, Kemal, Kirer, Elvis û Şêrînê bi zorê ji mala hevalê wê hatibû derxistin û heta du meh û nîv jî ti agahî jê nehat standin. Polîsê Detmoldê piştî bûyerê hemû endamên malbata Ozmenê xistin bin çavan û li gellek deveran li Arzuyê geriya, lê laşê Arzuyê di 13ê Çileyê de li cîhekî din hat dîtin.


Di dadgehê de 4 bira û xwişkek Arzû Ozmenê amade bûn


Arzû Ozmen

Dadgeha Eyaletê ya Detmoldê hefta borî bûyera Arzuyê wek “kuştina bo namûsê binav kir” û ji ber ku xwişka xwe Arzu Ozmen revandin û kuştin, cezayên giran dane xuşkek û 4 birayên wê. Dadgeha doza Arzu Ozmenê roja 30yê Nîsanê destpêkir û Şêrîn Ozmen li xwe mikur hat ku ew û 4 birayên wê seva 1ê Mijdarê çûne Arzû ji mala hevalê wê derxistine û bi otomobîlê ew birine derveyî bajêr. Li gor axaftina Şêrînê, dema Arzû birine cîhekî dûr, di navbera Osman û Arzûyê de pevçûn derketiye û Osman du gule bera serê Arzuyê dane û ew kuştiye. Dadwer Michael Reineke piştî hemû lêkolîn û axaftinan, lixwemikûrhatina birayê Arzuyê, Osman Ozmenê 22 salî, li ber çav girt û biryara dawî da. Reineke wek kujerê bûyerê Ozman Ozmen nîşan da û jê re cezayê girtîgehê yê heta hetayê birî. Serokê dadgehê ji ber ku xwişka Arzûyê ya mezin Şêrîn (27) û Kirer Ozmen jî di revandin û kuştina Arzûyê de rol leyîstine 10 sal ceza dane wan û 5 sal û nîv jî da Elvis ve Kemal Ozmen ku wan jî di revandina Arzuyê de cîh girtibûn.

Arzu Ozmen şeva 1ê Mijdara 2011yê, dema ku li mala hevalê xwe yê alman Alexander K. (20) dima, ji aliyê xwişk û birayên xwe ji wê malê hat revandin û di 13ê Çileyê de jî laşê wê li nêzîkê bajarê Lübeckê di saheya golfê de, 300 km dûrê Detmoldê, hatibû dîtin. Vê bûyerê di çapemeniya almanî de dengekî mezin vedabû.

# Heftiya bê ala Kurdistanê bi fermî tê hildan





» Biryare bo cara yekemîn bi awayekî fermî ala Kurdistanê li Nûneratiya Herêma Kurdistanê li Belçîkayê bê hildan.

Wêne: Rûdaw

**Belçîka (Rûdaw) -** Di hevpeyvîneke ligel Rûdawê de serokê Nûneratiya Herêma Kurdistan li Yekîtiya Ewropayê, Karlos Kurdî Gravî, bal kişand ser giringiya Herêma Kurdistanê ji bo Yekîtiya Ewropayê û got: “Di pratîkê de dezgeh û saziyên Yekîtiya Ewropayê bi cidî û giringî ligel me tevdigerin, bo pirraniya civîn û konferansan me vedixwînin û mehane civînên du-alî çêdibin û rawêjê bi me re dikin. Bi taybetî li ser dosyeyên Îraq, Îran û pirsên têkildarî Kurdistanê gazî me dikin.”

Bi nerîna Karlos Kurdî, rewşa siyasî, ewlehî û asayiş, aborî, hebûna gaz û petrolê û taybetmendiyên pozîtîv ên neteweyî bûne sedem ku Ewropî bi çavekî taybet temaşeyî Kurd û Herêma Kurdisanê bikin û vexwendinên Nûneratiya Herêma Kurdistanê ji aliyê parlemena Ewropayê û serokatiya wê û Komîsyonên Ewropayê ve jî nîşanên vê yekê ne.

Serokê Nûneratiya Herêma Kurdistan li Yekîtiya Ewropa, derbarê hildana ala Kurdistanê bi awayekî fermî li Belçîkayê, ji Rûdawê re eşkere kir: “Heyamek bû danûstandin di navbera me û Wezareta Derve ya Belçîkayê de hebûn û me daxwaz kir ku bi fermî ala Kurdistanê li Nûneratiya Kurdistanê bê hildan. Wezareta Derve ev daxwaza me qebûl kiriye û heftiya bê emê bo cara yekemîn bi fermî ala Kurdistanê li Nûneratiya Herêma Kurdistanê hidin.”




**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî

**Marketing û reklam**
Mansour Sedghi
m.sedghi@rave-online.org

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

**Pêwendî**
Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net / www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

## Wezîrê Enerjiyê yê Tirkiyeyê bo Rûdawê axivî:



# Li vir rûn, şekir û ar heye, lê nekirine helaw

» Me qunaxeke girîng a berhemanîna neft û gazê ligel Herêma Kurdistanê derbas kiriye.



Wezîrê Enerjiyê yê Tirkiyeyê Taner Yildiz (aliyê çepê), ligel Wezîrê Çavkaniyên Xwezayî yê Kurdistanê Aştî Hewramanî (aliyê rastê)

Wêne: Rûdaw

Wezîrê Enerjiyê yê Tirkiyeyê, Taner Yildiz, di hevpeyvîneke taybet ligel Rûdawê de, di perawêza konferansa enerjiyê li Hewlêrê ku bi beşdariya çendîn şîrketên hilberîna warê neft û gazê li Hewlêrê birêveçû, got ewê alîkariyê bidin bo misogerkirina enerjî û berhemên neftê bo hevwelatiyên Kurdistan û Îraqê bi giştî û ecêbmayî ma ku tevlî van hemû çavkaniyên enerjiyê, hêşta li bajarê Mûsil rojane tenê şeş demjimêran elektrîk heye. Yildiz ev rewş şibihand helwayê û got "li vir rûn, şekir û ar heye, lê ev nekirine helaw!"

**Rûdaw: We di axaftinên xwe de behsa vê yekê kir ku hûn hewl nadin aloziyan ligel Bexdayê çêkin û hûnê yasayên Hikûmeta Îraqê li ber çavan bigrin derbarê girêbestên neft û gaze ligel Kurdistanê. Lê Îraq dijî hemû girêbestên ligel Herêma Kurdistanê ye. Eger ev hikûmet bi heman şêweyê Exxon Mobil goşar û gefan li we jî bike, hûnê çi bikin?**

**Taner Yildiz:** Emê hewl nedin destê xwe bavêjin van biryar û yasayên ku Hikûmeta Îraqê wan derdixîne. Ango mafekî sirûştî yê her welatekî ye ku di hundirê xwe de biryaran bide û wan cîhbicîh bike. Li gor me rast e ku hemû dahatên li vir tên bidest xistin, tevlî yên hikûmeta navendî jî, divê li ser hemû Îraqê bên dabeş kirin. Ev di vê çarçoveyê de nikarin dijberiya van curê biryaran bikin. Lê tabloya giştî ji me re dibêje ku li Îraqê gaza sirûştî heye û neft heye û divê bilez bên deranîn û rewşa Îraqê berbi normalbûnê biçe. Lê di vê de jî nabe cudahî bê kirin. Divê pişka Kurd, Şiî û Sunniyan di van xêr û bêran de hebe. Em ligel vê yekê ne û hizra tiştekî din nakin li derveyî vê.

> **Pêwîstiya wan bi elektrîkê heye û daxwaz ji me kirine ku em elektrîkê bidin wan û emê hewl bidin ku alîkarên wan bin bo dabînkirinê elektrîkê.**

**Nûnerên Şîrketa Niştîmanî ya Neft û Gaza Tirkiyeyê (TPAO) li vir in. Gelo ti lihevhatinek heye ku ev şîrket li Kurdistanê jî hilberînê bike?**

Nexêr, niha di vê qunaxê de behsa hatina Şîrketa Neft û Gaza Tirkiyeyê û hilberîna li vir nehatiye kirin.

**We behsa wê yekê kir ku di vê heftiya dawî de we qunaxeke girîng derbas kiriye û we got jî ku ji vir û şûnde wê şandina nefta xav a Kurdistanê bi rêya Tirkiyeyê destpêbike. Gelo ev lihevhatin ligel Hikûmeta Herêma Kurdistanê pêk hatiye?**

Girîngtirîn qunaxa ku me derbas kiriye eve ku xizmeta mirovan bikin. Pêwîstiya hemwelatiyên vir bi berhemên neftî yên weke benzîn û gazê heye. Ev qunaxeke girîng e. Karta taybet girêbest îmzekirine, daku berhemên neftî bo vir dabîn bike. Em behsa vê yekê dikin ku pêwîstiyek heye û divê bê dabîn kirin. Mixabin min di kongreya rojnamevanî de nebihîst ku behsa pêwîstiya xelkê bê kirin bo berhemên neftî. Ma pêwîstiya xelkê vir pê tine? Ma pêwîstiyên xelkê bo medya vir ne girîng in?

**Gelo bi vê şêweyê wê pêwîstiya Kurdistanê bi benzîn û gazê bi rêya vê lihevhatinê misoger bibe?**

Ez nikarim bêjim ku wê hemû pêwîstiyên vir dabîn bike. Lê wê beşeke mezin dabîn bike. Ev wê ne tenê girêdayî vir be, lê ji aliyê hikûmeta navendî ya Îraqê jî daxwaziyên ji vê curê ji me hatine kirin ku em berhemên neftî bo wan jî dabîn bikin.

**We piştî vê civînê civînek ligel parêzgarên Mûsil û Kerkûkê jî pêk anî...**

Pêwîstiya wan bi elektrîkê heye û daxwaz ji me kirine ku em elektrîkê bidin wan û emê hewl bidin ku alîkarên wan bin bo dabînkirinê elektrîkê. Niha li Mûsilê rojane tenê 6 demjimêran elektrîk heye û 18 demjimêran bêyî elektrîkê derbas dikin.

**Hûn dixwazin stasyoneke elektrîkê li ser sînorê Tirkiye û Îraqê ava bikin ku bi gaza sirûştî karbike û ji Îraqê jêre biçe. Ev di kîjan qunaxê de ye?**

Rast e, lê ez dixwazim vê yekê bêjim ku armanca me eve ku elektrîka vê stasyonê bidin xelkê vir. Li vir rûn, şekir û ar heye, lê nekirine helaw. Li vir kêmatiyek heye. Neft heye, gaza sirûştî heye û heta stasyonên berhemanînê jî hene, lê dîsan jî elektrîk tine, ev tiştekî gellekî seyr e!

**We di axaftinên xwe de gellekî dakokî li ser yekparçeyiya xaka Îraqê dikir û we gellekî ev hevok bikar dianî. Gelo hûn ditirsin ku li ser hatina we bo vir ji aliyê Hikûmeta Bexdayê ve reaksyoneke tûnd derkeve?**

Nexêr, min behsa rastiyekê kir û ku min çendîn caran dubare kir, bo wê yekê bû, daku bi şaşî neyê fêm kirin.

**Hidir Ercan bi biryar e:** Heta UNICEF û DMME bo perwerdeya bi kurdî biryarek erênî nedin, ez zarokên xwe naşînim dibistanên tirkî.



Wêne: DIHA

Mehmet Sebatli

## Ercan Hidir 10 sal in bi serê xwe têdikoşe:

# Heta di dibistanan de perwerda kurdî neyê dayîn zarokan naşînim dibistanê

Li Tirkiyeyê û Bakurê Kurdistanê di demên dawî de li ser mafê perwerdeya bi zimanî zikmakî nîqaşên berfireh tên kirin û partiyên siyasî yên Kurdan vê yekê wek xala sor a Kurdan dibînin û dixwazin ev maf bo zarokên Kurd di makezagona nû de bê misogerkirin.

Rayedarên hikûmetê jî ev demekê ye ragihandin ku dersên zimanê kurdî dikarin di dibistanan de li gor daxwaziya malbatan wek “dersa bijarte“ bê dayîn. Lê ev daxuyanî nabin bersiva daxwaziyên hemû Kurdan, ji ber ku bavek heye ku bi hewldanên xwe yên 10 salî di mijara daxwaziya perdeweya bi zimanê kurdî de bi serê xwe mînakek balkêş e. Bavê 11 zarokan Hidir Ercanê Mêrdînî ji rayedarên dewleta tirk daxwaz dike ku ji bo 6 zarokên wî yên biçûk mafê perwerda bi kurdî bidin û ji ber daxwazên wî bi cîh nayên ew 6 zarokên xwe naşîne dibistanê û li malê wan perwerde dike.

Hidir Ercan ji Rûdawê re behsa serpêhatiyên xwe yên 10 salên borî kirin û ragehand heta biryarek erênî ji UNICEFê û ji DMME dernekeve, ew zarokan neşîne dibistanê û got, “Ji bo herdu zarokên biçûk bê perwerde nemînin, ez ê wan bibim Herêma Kurdistanê.“

### Ji bo daxwaznameyê 3 meh ceza stand

Hidir Ercan ji Misûriya ser bi Mêrdînê ye û bi xwe şofêrtiyê dike. Ew bavê 11 zarokan e û ji sala 2002yê ve, dema ku li dibistanan û zanîngehan cara yekem daxwaziya perwedeya bi kurdî hat kirin, hewl dide zarokên wî di dibistanan de perwerdeya kurdî bibînin. Ercan bi dehan daxwazname ji wezaretan û rayedaran re şandiye û gotiye ku heta daxwaza wî ya perwerdeya zimanê zikmakî bi cîh neyê, wê zarokên xwe neşîne dibistanê. Cara yekem Ercan di sala 2002yê de li Mêrdînê daxwazname pêşkêşî wilayeta bajêr dike lê piştî ku ji avahiya wilayetê derdikeve ji aliyê polîsan ve tê binçavkirin. Wî di vê bareyê de got, “Ji min xwestin ku ez daxwaznameya xwe paşve bikişînim, anjî wê min têxin girtîgehê.“ Hidir Ercan paşve gav navêje, xwedî li daxwaznameya xwe derdikeve û tê girtin û sê mehan di girtîgehê de dimîne.

Ev sê meh bo Hidir Ercan dibin wek sê mehên dibistana kurdî: “Hevalekî ku ji doza siyasî hatibû girtin di wan 3 mehan de perwerdeya gramera kurdî da min û ez fêrî xwendin û nivîsandina rast a kurdî bûm. Dersên ku ez niha didim zarokan ji wan 3 mehan tên.“

### Ji Mêrdîne diçe Stenbolê

Piştî ku Ercan serbest hate berdan, zext lê tên kirin û neçar dimîne mala xwe ji Mêrdînê bar dike û diçe Stenbolê, navçeya Zeytinburnuyê. Lê ew li wir jî dîsa di daxwaza xwe de israr dike û dubare dike ku heta daxwazên wî pêk neyên, ewê nehêle ku zarokên wî bi zimanê biyanî perwerde bibin.

Ercan di sala xwendinê ya 2010-2011yê de li Stenbolê ji Wezîra Perwerdehiya Neweteyî Nimet Çubukçu û serokê meclîsê yê wê demê Mehmet Ali Şahin re daxwazname şandin. Ercan di vê bareyê de got, “Bi nivîskî bersiv dane min. Nivîsandibûn ku ji bo kurdî kursên taybet dikarin bên vekirin lê li gor yasayan bi zimanê biyanî perwerde nayê dayîn. Ango kurdî wek zimanekî biyanî dihesibandin.“

### “Dibe ku zarokan bibim Başûrê Kurdistanê”

Ew dev ji hewldanên xwe bernade, di heman demê de careke din daxwazname dinivisîne, îcar navnîşan Serokê Komîsyona Mafên Mirovan a Meclîsê Prof. Dr. Zafer Uskul e. Lê Uskul jî bersîvek erênî nade Ercan. Ercan roja 20ê Gulanê ligel 6 zarokên xwe li taxa Galatasarayê xwepêşandanek pêk anî û bang li rayedarên dewletê kir ku guh bidin daxwaziya wî û bi cîh bînin.

Wek ku Hidir Ercan diyar kir, rayedarên Wezareta Perwerdehiya Netewî zextan lê dikin ku ew zarokan bişîne dibistanê, yan jî wê zarokan jê bistînin. Ercan got, “Ev 10 sal in ez li ber xwe didim, ez ê berxwedana xwe dom bikim.“ Ew di vê navberê de di malê de perwerdeya kurdî ya ku sê mehan di girtîgehê de fêr bûbû dide zarokan û got, “Niha hemû zarokên min jî hem dikarin bi kurdî û hem jî dikarin bi tirkî bixwînin û binisvînin. Ez bi kurdî dersan didim, lê ew di nava xwe de ji hev fêrî tirkî dibin.“ Ercan axaftina xwe wiha bi dawî kir: “Heta ku ji UNICEFê û ji DDMEyê biryarek erênî dernekeve, heta ku di dibistanan de bo zarokên kurd perwerdeya bi kurdî neyê dayîn, ez zarokan rênekim dibistanên tirkî. Lê ez dixwazim zarokên min niha jî bê perwerde nemînin û difikirim ku di demeke kurt de wan bibim Başûrê Kurdistanê. An li Mexmûrê, an li Qendîlê an jî li Dihokê gellek cîh hene ku perwerda bi kurdî didin.”

**Ji bo navê kurê xwe serî li DMME dide**

Ercan niha 6 zarokên xwe yên biçûk, yên di dema dibistana seretayî de ne, naşîne dibistanê. Navê wan wiha ne: ***Dêrsim (15), Mazlum Dogan (13), Ocalan (12), Mahsum Korkmaz (10), Welat Şervan (8) û Şoreşger Berîtan (7).*** Bavê zarokan Hidir Ercan diyar kir ku navê kurê wî yê 8 salî Welat Şervan ji ber herfa W ji aliyê Gerînendeya Nifûsê ve nehatiye qebûlkirin û got, “Lewma niha nasnameya kurê min tine û min ew romar nekiriye.” Ercan destnîşan kir ku li Tirkiyeyê çareseriya rêyên hiqûqî bo tomarkirina navê kurê wî nemane û got: “Min hemû belge dane parêzerê xwe, wê li Dadgeha Mafê Mirovan ya Ewropayê li dijî Tirkiyeyê dozê veke.” Bo çûyîna Herêma Kurdistanê jî Hidir Ercan got ku bo zarokan nasname pêwîst e û wiha axivî: “Ez difikirim ku ji bo Welat Şervan nasnameyekê derxînim û navê Bahoz Erdal lê deynim û wî bibim Başûr.”

# Erdogan artêş parast

## » *Wall Street Journal:* *Predator zanyarî dane*

## » *Artêşa Tirkiyeyê:* *Heron zanyarî dane*






**Hêmin Xoşnaw**

Piştî derbasbûna nêzîka 6 mehan di ser komkujiya Roboskê re, rojnameya Wall Street Journal a amerîkî ragihand ku Amerîka bi rêya testa firokeyên bê pîlot –predator- zanyarî dane artêşa tirk ji bo wê êrîşê. Lê serokatiya artêşa Tirkiyeyê vê yekê red dike û berpirsên BDPê jî dibêjin wê dozê li dijî Amerîka vekin.

Di roja 28ê Kanûna sala borî de firokeyên şer yên Tirkiyeyê li devera Qilaban nêzîkî gundê Roboskê li ser sînorê Herêma Kurdistanê êrîş kirin ser karwaniyên kurd û di encamê de 34 karwanî hatin kuştin.

Digel hemû sozên hikûmetê ji bo eşkerekirina berpirsên wê komkujiyê, hikûmet û dezgehên pêwendîdar heya niha tiştek di vî warî de nekirine. Rapora rojnameya amerîkî di roja 17ê Gulanê de careke din ev komkujî kir rojevê. Di vê raporê de hatiye eşkerekirin ku aliyê amerîkî gava tevgera wan kesan dîtiye û gotiye baş çavdêriya wan bike, lê aliyê tirk di cîh de biryar daye ku ew gerîllayên PKKê ne, lewma arasteya firokeya bê pîlot ya amerîkî guhartiye.

**Pêwist e li bendê bin, daku bizanin rastî çi ne. Eger Amerîka roleke xirab di vê pirsê de lîstibe, em bêdeng nabin.**

Çavdêrîkirina tevgera çekdarên PKKê ji aliyê predatorên Amerîkayê li gor peymana herdu dewletan tê kirin. Di çarçoveya vê peymanê de 4 predatorên amerîkî, ku kongrêya Amerîkayê razî nebû wan bifroşe Tirkiyeyê, li bingeha Încirlîk hatine bicîhkirin û bi serpereştiya Amerîkayê çavdêriya asmanî ya Herêma Kurdistanê dikin. Gava predator tiştekî dibînin, di cîh de odeya hevbeş ya amerîkî-tirkî li Enqere agahdar dikin.

### Artêşa Tirk nûçeya WSJ red dike

Lê serokayetiya artêşa Tirk di daxuyaniyekê de nûçeya rojnameya amerîkî red kir û daxuyand: "Yekemîn zanyariya bûyerê di 28ê Kanûnê de, li başûrê Qilaban, ji aliyê firokeyên bê pîlot yên Tirkiyeyê "heron" hatiye."

Herwiha serokê komisyona mafên mirovan li parlementoya Tirkiyeyê, Ayhan Sefer Ustun, ku ji bo lêkolînkirina rastiya bûyerê çend caran li dîmenên vîdyoyê yên bûyerê temaşe kiriye, rapora rojnameya amerîkî dûrî rastiyê wesf kir û got: "Hemû dîmen û tomarên ku me li wan nêrî ji aliyê heronan hatine girtin, ku dîmen ji Bedlîsê dest pê dikin û heron nizim dibe, heya digihe sînor û berbi Colemergê diçe. Di wê dema ku digihe wê devera nêzîkî sînor û di nav xaka Îraqê de otomobîlekê dibîne, piştre jî otomobîla duyem û sêyem dibîne. Hinek kes ji bakurê rojava berbi wan otomobîlan diçin."

Parlementerê CHPê û endamê komîsyona lêkolîna komkujiya Roboskê, Levent Gok, ji Rûdawê re diyar kir ku ji wê rojnameya amerîkî bawer nake û wek senaryoyeke armanca wê nediyar wesf dike: "Dîmenên tomarkirî pirr bi awayekî eşkere nîşanî me didin ku grûbeke 40 kesî ji gund derdikevin. Mirov û hêştir pirr bi hêsanî ji hev tên cudakirin. Komîsyonê li dîmenên 8-9 saetî mêze kiriye. Karwan sînor derbas dike. Berî ku sînor derbas bikin, leşker tevdigerin, guleyan diteqînin. Lê karwan guh nade wan û pirr bi hêsanî rê derbas dike. Heya digîjin otomobîlên aliyê din yê sînor. Barekî bar dikin û karwan vê carê rêya mirinê dide ber xwe. Lewma di rewşeke bi vî rengî de pêdivî bi zaniyariyên predatorên amerîkî tine. Bawer dikim ev senaryo ye û armancên taybet li pişt hene."

### BDP: Em bêdeng namînin

Ligel belavbûna nûçeyê, berpirsên BDPê ragihandin ku ew ji Amerîka daxwaz dikin ku daxwaza lêborînê ji wan bike û li dadgeha navnetewî ya Lahey dozê vedikin. Lê bêdengiya Amerîkayê û daxuyaniyên serokatiya artêşa tirk BDP di bendewariyê de hiştiye.

Parlamenterê bajarê Rihayê yê BDPê, Îbrahîm Bînîcî, ji Rûdawê re daxuyand: "Bawer dikim lezandin di vê pirsê de bê sûd e. Pêwist e li bendê bin, daku bizanin rastî çi ne. Eger Amerîka roleke xirab di vê pirsê de lîstibe, em bêdeng nabin."

Di dema amadekirina vê raporê de Serokwezîrê Tirkiyeyê Recep Tayyip Erdogan li Pakistanê ragihand ku ti kêmasiyeke artêşê tine ye û artêşê karê xwe bi serkeftî pêkaniye û got, "Me bo malbatên kuştiyan tazmînat daye, êdî çi dixwazin?" Hevserokê BDPê Selahattin Demirtaş jî axaftina Erdogan nirxand û got, "Erdogan li xwe mikûr tê ku haya wî ji serî de ji bûyerê heye."

## Şirove



**Îmzeyên bo serxwebûna Kurdistanê**

**Rêbwar Kerîm Welî**

Nûrî Malikî di hevpeyvîna televizyona NRT de, tevlî ku gellekî êrîşî Barzanî kir, lê bi şêweyekî dûr ji tan û azirandinê. Kesê ku bi dîqet guhdariya gotinên wî kiribe, jêre diyar dibe ku Malikî bi rastî gellekî xemgîn û nexweş e ji ber jidestçûyîna "El- Îraqê", ji ber ku wî hest kiriye ku piştî nêzîkî 90 salan, hindik maye ev "El-Îraqa" ku li rêza pêşî ya nasyonalîzma erebî bû, weke Yûgoslaviya lê tê û bo kesî jî ne girîng e, heta bo cîranên ereb jî ku çi bi serê "El- Îraqê" bê. Ji ber ku ev welat nekarîbû bi vê strûktûrê bibe welatek bo hevwelatiyên xwe, ne jî bibe cîranekî baş bo cîranên xwe.

Ji bilî Malikî êdî kes şîniya jidestçûn û perçebûna El-Îraqê nake. Ango pêwîst nebû Serokatiya Herêma Kurdistanê evqas ser van gotinan raweste, ji xwe Malikî di vê demê de nayê destxweşiyê li Herêma Kurdistan û serkirdeyên wê bike.

Ez di dawiya meha borî de li Tirkiyeyê beşdarî konfrenasekê bûm derbarê destûra nû ya Tirkiyeyê de. Min li wir behsa destûrê Îraqê û mafên Herêma Kurdistanê kir û min got ne Îraq welatekî federal e, ne Kurdistan jî herêmeke federal e. Di beşa erebî ya Îraqê de hikûmeteke navendkar a xurt heye ku roj bo rojê hewla xwebihêzkirinê dide, Kurdistan jî bêtir weke welatekî serbixwe dixuyê û bi konfederalî bi Bexdayê hatiye girêdan û roj bo rojê ji Îraqê dûr dikeve.

Çavkaniya vê dûrketin di siyaseta serbixwe ya nefta Kurdistanê de dixuyê. Êdî di destê Kurdên li Herêma Kurdistanê de çekek heye ku gellekî ji klaşînkofên wan bibandortir e. Her îmzeya ku Hikûmeta Herêma Kurdistanê davêje ser girêbesteke neftê ligel welat yan kompaniyayeke biyanî, Kurdan bêtir dûrî Îraqê dike û bêtir nêzîkî serxwebûnê dike. Siyaseta neftê ya Herêma Kurdistan çiqas bo hevwelatiyên Kurdistanê nezelal jî be, lê ji ber ku kariye pêwîstiyên bingehîn, ku ji hemûyan girîngtir elektirîk e, bi rêjeyeke berbiçav bo hevwelatiyên Kurdistanê dabîn bike, kariye cîhê Kurdistanê weke welatekî neftê li ser nexşeya enerjiya cihanê de qeyd bike û bi hebûna kompaniyeyên mezin pêgîriyên welatên xwedî berjewendî aniye holê.

Carekê rojnamevanekî biyanî ji min pirsî, Amerîka çima dema ji Îraqê derket hinek bingehên leşkerî bo parastina we li wir nehiştin? Min jî gote wî, pêwîstiya me pê nebû, ji ber ku li şûna van Exxon Mobîl bo me hişt! Dema berî çend heftiyan jî Serokê Herêma Kurdistanê di civîna ligel rojnamevanan de got ku hatina Exxon Mobîl bo vir ji mayîna deh tîpên leşkerî girîngtir e, min zanî ku ev analîza min ne şaş bû.

Tevlî ku yekemîn şîrketa ku girêbest ligel Hikûmeta Herêma Kurdistanê çêkir bo derxistina nefta Kurdistanê, şîrketeke tirkî bû, lê Tirkiye welatê dawî bû ku serxwebûna siyaseta neftê ya Kurdistanê nas kir, ji ber siyaseta xwe ya derve himber Îraqê. Di çend salên borî de jî hewlên hikûmeta navendî ya Bexdayê û Enqerê di vê çarçovê de bûn ku vê siyaseta serbixwe ya Kurdistanê dorpêç bikin, lê ev bê encam bû û di dawiyê de Tirkiye jî hate ser vê xetê.

Têkçûna têkiliyên Tirkiyeyê ligel hikûmeta Malikî li Bexdayê wisa kir ku Tirkiye ji siyaseta xwe ya navendkarî himber Îraqê dûr bikeve. Wezîrê Enerjiya Tirkiyeyê, ku berî çend rojan bo cara pêşî hatibû Kurdistanê, bi şêweyekî nerasteras amaje da wê yekê ku ji vir û şonde ewê di warê neft û gazê de ligel Herêma Kurdistanê hilberînê bikin. Ev jî guhertineke gellek mezine di siyaseta derve ya Tirkiyeyê de. Tirkiye jî bi vê yekê ranewestiya û di konferansa ku bi amadebûna Wezîrê Enerjiya Tirkiyeyê û herdu parêzgarên Mûsil û Kerkûkê de berî çend rojan li Hewlêrê hat sazkirin, peyameke gellekî girîng da Malikî û Hikûmeta Îraqê. Peyam jî ev bû: Eger em bixwazin emê Mûsil û Kerkûkê jî bixin ser Kurdistanê û em dikarin nakokiyên wan jî ji holê rakin.

## Xebat û cil û bergên kurdî bi swêdî

# Du belgefîlm di du kanalên swêdî de



**Stockholm (Rûdaw) –** Digel nerazîbûna Kurdên li Swêdê ji bo nîşandana rûyê neyênî yê civaka kurdî ji aliyê medyaya Swêdê ve, sê şevan li pey hev herdu kanalên swêdî Svaria TV1 û 2 belgefîlmek derbarê xebata gelê kurd û bikaranîna çekên tevkuj û kîmawî li dijî Kurdan weşandin.

Belgefîlm bi nîşandana xebata borî ya gelê kurd û peyvek derbarê Barzanî wek serokê xebata Kurdan dest pê dike. Pirsa petrolê û hatina ser text ya Saddam beşekî din yê belgefîlm bû, ku çend wêneyên kêmdîtî yên dîrokî bi kalîteyeke bilind derbarê dema borî ya gelê kurd li Başûrê Kurdistanê nîşan da. Fîlm behsa bikaranîn çekên kîmyewî dike, ligel nîşandana çend dokumêntên vîdyoyî û gotinên rizgarbûyekî bi navê Hana Letîf ku vêga li Swêdê rûdine.

Nîşandana vî fîlmî û dubarekirina wî ji bo çend rojan hemdem e ligel guftûgokirina pirsa kurd li Parlementoya Swêdê û pirr caran ev babet jî bûne cîhê nerazîbûna balyozxaneya Tirkiyeyê li Swêdê û çend caran agahdariya boykotkirina medyaya Swêdê dane di dema nîşandana fîlmên wiha û behskirina pirsa kurd.

Berî çend mehan heman kanalê belgefîlmekî ku dema wê 20 xulek bûn derbarê cil û bergên kurdî de nîşan da û çend caran behsa stîl û çawaniya lixwekirina cil û bergên serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî kir. Piştî nîşandana heman fîlmî li dibistaneke ziman li Stockholmê ji aliyê xwendekarekî kurd ve, şerê devkî di navbera Kurd û Ereban de dirust bû û bû sedema nerazîbûna xwendekarên ereb, ji ber ku bi baweriya Ereban ev reklam e ji bo siyasetvanên kurd.



# Kurdan bêlaş fêrî fransî dike

» Birayîmî Mela: Holendî ji ber ku çar zimanan dizanin, baweriya wan bi xwe ji gelên din ên Ewropayê bêtire.

**Hewlêr (Rûdaw) -** Dema ku koçberiya bi kom a xortên bêhêvî di salên notî yên sedsala borî de ji Başûrê Kuristanê dom dikir, wî jî rêya qeçax ya berbi derve hilbijart. Ew di destpêka sala 1999ê de weke penaberekî neyasayî dighîje welatê Fransayê, bi hêviya ku di dema 24 demjimêran de ji wir bighîje welatekî din ên Ewropayî. Lê hin karên biçûk pêkhatin ku rêya jiyana wî guherandin û heta heta li wir asê ma. Wî di dema nêzîkî 10 salan de heşt pirtûkên zimanzaniyê çap kirin û îro jî hemû îmkanên xwe bikartîne, daku xortên Kurdan bêyî belaş hînî zimanê fransî bike.

Îbrahîm Tahir, ku weke "Birayîmî Mela" tê naskirin, di sala 1973yê de li Derbendîxan, li Başûrê Kurdistanê, ji dayik bûye. Ew di sala 1994ê de, ji ber şerê navxweyî, li bajarê Helebceyê asê ma. Wî ji wir berê xwe da Îranê û berbi derveyî welat derket, lê desthilatdarên Îranê wî digirin û piştî bêtirî 9 mehên zîndankirin û îşkencekirinê, wî dersînor dikin. Ew di sala 1998ê de careke din berê xwe dide rêya qeçax û vê care dighîje Ewropayê. Dema ku dixwest ji Fransayê derbasî Almanyayê bibe, ew ji aliyê polîsên fransî ve tê girtin. Ev girtina ku tenê du rojan dom kir, rêya jiyana wî guherand. Ew li wir mafê rûniştinê distîne û piştî hînbûna zimanê fransî dest bi xwendina yasayê dike û di sala 2004ê de jî ligel xanimeke fransî dizewice.

Birayîmî Mela di maweyê 13 salên borî de bi şêweyekî berdewam li Fransayê mijûlî amadekirina du ferhengên kurdî-fransî û fransî- kurdî bû, sê pirtûkên warê rênûsê, herwiha mijûlê amadekirina sê pirtûkên din bû derbarê çawaniya hînbûna zimanê kurdî bo Frankofonan û hînbûna zimanê fransî bo Kurdan.

Ev xortê Kurd tevlî xwendina yasayê û bidestxistina pisporiyeke temam di zimanê fransî de, ew di dibistaneke taybet de hînî zimanên îngilîzî û almanî jî bûye. Zimanên tirkî û erebî jî wî li Kurdistanê xwedibûn. Ferhenga ku Îbrahîm Tahir amade kiriye, weke mezintirîn ferhenga ji vê cureyê di pirtûkxana kurdî de tê naskirin, herwiha bo danîna berhemên din ên warê zimanzanî jî.

### Yek ji mezintirîn kurteferheng

"Ferhenga Şîlane" ku çapa wê ya yekem di sala 2010ê de û ya duyem jî di 2012ê de derketiye, beşa wê ya fransî ji 15 hezar peyvan pêk tê û beşa kurdî jî bêtiriya peyvên nava zimanê kurdî li xwe digire. Birayimî Mela got "min bo çapa duyemîn a vê ferhengê nêzîkî hezar peyvên din zêdekirine û plana min heye ku bo her çapeke nû ez hevokên din lê zêdebikim, heta bibe ferhengeke gellekî mezin."

Ferhengeke ku Birayimî Mela amade kiriye, "heta niha yeke ji mezintirîn ferhengên kurt ên fransî ku ligel zimanekî din hatibe nivîsandin, ev jî ji ber ku min rêjeya ji sedî 90ê Ferhenga Şîlane aniye û hinekî biçûk kiriye û ev ferhenga kurt jê çêkiriye. Bi vê şêweyê bûye yek ji mezintirîn ferhengên kurt. Bo mînak ji ferhenga kurt a Oxford a fransî-îngilîzî, yan ferhenga kurt a almanî-fransî û hemû kurteferhengên erebî, tirkî û farsî mezintir e, tenê di beşa wê ya fransî de nêzîkî 14 hezar peyvan tê de hene."

Birayimî Mela bi vê yekê ranewestiya ku hewl bide Kurd zimanê fransî nas bikin, lê wî du pirtûkên din jî amade kirine bo wan kesên ku zimanê wan fransî ye û dixwazin hînî zimanê kurdî bibin. Birayimî Mela dibêje "min di xeyala xwe de ev pirtûk bo lawê xwe yê bi tenê û hevjîna xwe nivîsandiye, daku bi vê rêyê hînî kurdî bibin. Ji bilî ku Kurdistan jî berbi vebûneke firehtir diçe û misoger wê di dahatî de kesên ku fransî zimanê wan e, wê bêtir berê xwe bidin Kurdistanê."

> **Ev gotin li zora min çû, min gotê xanimê di demeke nêzîk de wê komeke pirtûkên min bikevin ber destan.**

Tiştê ku Birayimê Mela êşand û bû sedem ku ew dest bi amadekirina van berheman bike, dema bo cara pêşî ew çûye konsolxaneya Fransayê li Hewlêrê, xanimeke karmend a fransî li wê konsolxaneyê ji zarê dîplomatkarekî rûs behsa bêserûberiya pirtûkxaneya kurdî kiriye. Wî dîplomatkarê rûs gotiye vê xanima fransî "ji xwe pirtûkxaneya van jî tune ku mirov zimanê wan hîn bibe." Birayîmî Mela dibêje "ev gotin li zora min çû, min gotê xanimê di demeke nêzîk de wê komeke pirtûkên min bikevin ber destan û hûn dikarin bi rêya wan zimanê kurdî hîn bibin." Birayîmî Mela dilxweş e ku çend mamoste li konsolxaneya Fransa ya li Hewlêrê bêyî beramber xelkê hînî zimanê frensî dikin, loma wî tevaya berhemên xwe weke diyarî pêşkêşî van mamosteyan kirin.

### Hînkirina li ser facebookê

Birayîmî Mela li ser rûpela xwe ya Facebookê jî hewleke din destpêkiriye bo hînkirina zimanê fransî: "Min quncikeke taybet amade kiriye bo vegotina dersên hînbûna zimanê fransî, bêyî beramber. Ez gellekî kêfxweş dibin ku bikarim bi vê rêyê rolekê bilîzim bo gihiştina du zarokên kurd." Mela herwiha got "ez ê di dahatû de heman karî bo van Fransiyên ku dixwazin zimanê kurdî hîn bibin jî bikim, ji ber ku ev rêbaz ji aliyê darayî girane û kurseke sê-çar mehî li Parîsê duşê hezar Euro jêre lazim in. Mimkin e hin kes hebin ku gellekî hez dikin zimanê kurdî hîn bibin, lê ev îmkanên wan nebin, ez ê vê xizmetê ji wan re pêk bînim."

Birayîmî Mela hêvîdar e ku ev hewldanên wî tenê di çarçoveya zaravayê soranî de nemînin, loma jî amadeyiya xwe nîşan dide ku hemû mafên çapkirinê bide her kesê ku bixwaze van berhemên wî wergerîne ser rênivîsa latînî û zaravayê kurmancî. Ew di vî warî de dibêje "ziman hevalekî dilsoz ê mirovan e ku ti carî xiyanetê nake. Ji bilî ku ew neteweyên ku endamên wan gellek zimanan dizanin xwediyên xurtirîn kesatî û firehtirîn kultur in. Berê xwe bidin Holendiyan ku gellek zimanan dizanin. Baweriya wan bi xwe ji gelên din ên Ewropayê bêtire. Li Ewropayê kes zimanî Holendiyan nizane, lê wan zerar nedîtiye ku her yek ji wan çar zimanan dizane."

# Komela Kurdan a Lübeckê bûye cîhê qumarê!

Ev komel beriya derdorê 10 salan li ser daxwaza revenda kurd e herêma Lübeckê li bakurê Almanya hat vekirin. Piştî çend salan ku Kurdan çalakiyên xwe têda lidarxistin û bi taybetî jî civînên siyasî têde hatine kirin, komele di van demên dawî de veguheriye cîhê otomatîkên qumarê û bûye qehwexane û malbatên kurd jî êdî berê xwe nadin vê komeleya Kurdan û jê dûr ketine.

Aladîn Dêrikî yek ji damezrêner û endamê komîteya birêveber a komelê ye, ew ji Rûdawê re axivî: "Hevalên me ne yekhelwest bûn, her yekî bi goreyî serê xwe xwest komeleyê bo meremên xwe yên taybet bikarbîne. Vê dawiyê, bêyî biryara komîteyê, hin hevalan otomatîk anîn komelê."

Aladîn Dêrikî rexneyên dijwar li hevalên xwe yên komîteya rêvebir a komeleyê dike û dibeje ku "nabe di komeleyeke kurdî de qumar bê lîstin, bi hezaran cîhên qumarê hene, bila herin li wir bilîzin, ev der cîhê welatparêzan e."

Derbare hebûna otomatîkên qumarê di nav komeleya Kurdan ya Lübeckê de û rexneyên Aladîn Dêrikî, serokê komeleyê Hejar Soran ji Rûdawê re diyar kir ku buroya komeleya wan û ew cîhê ku otomotîkên qumarê lê hatine bi cîh kirin ji hev cuda ne û ew çayxaneyeke cuda ye. Hejar Soran herwiha got ku dema semîner û çalakiyên wan yên berfireh çêdibin ew ji xwediyê çayxanê daxwaz dikin ku çayxanê ji wan re vala bike û ew li wir çalakiyên xwe li dar dixin.

Lê kes û endamên komeleyê yên ji rewşa komeleyê haydar, gotinên Hejar Soran piştrast nekirin û ji Rûdawê re gotin ku Hejar Soran rast nabêje û ew cîhê ku otomatîkên qumarê lê hatine bicîhkirin ne çayxaneyeke cuda ye, lê ew jî girêdayî komelê ye.

Aladîn Dêrikî jî endam û berpirsên komeleyê bi tundî rexne dike û dibêje ku ew kes ji anîna otomatên qomarê bo nava komeleyê berpirs in. Dêrikî bi hêvî ye ku di vî warî de Nûneratiya Herêma Kurdistanê li Berlîn alîkariya wan bike û bi hilbijartiya komîteyeke nû û derxistina otomatîkan Komeleya Kurdan ya Lübeckê bê vejandin û li karê xwe yê esasî bê wegerandin, ku ew jî xizmeta revenda kurd ya bajarê Lübeckê ye.






Wêneyê C. Talabanî û M. Barzanî li kêleka otomatîkeke qumarê

Wêne: Rûdaw

# Berxwedan li kêlaka gundê xwe hat veşartin

**Koln (Rûdaw) -** Îsmaîl Işik, yê ku bi nasnavê Berxwedan dihat naskirin, li bajarê Bremenê jiyana xwe ji dest da û li gundê Şirnexê hat definkirin.

Roja 17ê Gulanê li nexweşxaneyeke bajarê Bremena Almanyayê gaziyê şer Berxwedan Gabar (Îsmaîl Işik, 35) jiyana xwe ji dest da. Hevalekî Işik, Rêdûr Çirav ragihand ku Işik ji mêj ve ji ber dil û gurçikên xwe tedawî didît. Wek ku Çirav got, dilê Îsmaîl Işik ji zarokatiyê ve qul bû û di sala 1995ê de li Tehranê dilê wî emeliyat kirine: "Mixabin birîna wî dom dikir û gurçikên wî jî kar nedikirin û lewma li Bremenê jî diçû nexweşxaneyê."

Îsmaîl Işik di sala 1977ê de li gundê Şirnexê Dêrgulê ji dayîk bû, di sala 1992yê de tevlî gerîllayên PKKê bû û di sala 1995ê de di encama teqîna mayînê li Roboskê birîndar bû û herdu destên xwe û çavê xwe yê çepê wenda kir. Teqînê bandorek mezin li dilê wî jî kir. Işik di sala 1996ê de ji bo dermankirinê hatibû Almanyayê.

Cenazeyê Işik li Mizgefta Seîdê Kurdî hat şuştin û roja 19ê Gulanê ji Dusseldorfê bi firokeyê bo Şirnexê hat rêkirin û di 20ê Gulanê de li kêleke gundê Dêrgulê hat definkirin. Rêdûr Çirav diyar kir ku ji ber Dêrgul ji aliyê artêşa tirk ve hatiye şewitandin, cenazeyê Îsmaîl Işik li kêlaka Dêrgulê li gundekî din hatiye veşartin û got ku Işik çend sal berê zewicîbû û keçeke wî ya 1 salî hebû.



Îsmaîl Işik (Berxwedan Gabar)

## Şirove

### Kurd nabin Ewropî



Hêmin Ebdulla

Her çiqasî li welatên Ewropayê yasa nijadperestiyê qedexe bikin jî, lê kesên ku demekê li Ewropa bijîn dibînin ku li vir yasa jî nikare nijadperestiyê qedexe bike.

Tecrûbeya tal ya Naziyan li Almanya û faşîstan li Îtalya wisa kir ku Ewropî ji bo girtina rê li ber nijadperestiyê yasayan deynin û bikar bînin. Piştî şerê cîhanê yê duyem û heya vêga jî Alman xwêdana şermezariyê dirijînin. Ji ber ku tiştê Hitlerê almanperest û artêşa wî ya mezin di nava şer de anîn serê mirovê nijad cuda ewqasî cihê şermê ye ku heya vêga jî fîlm li ser tên çêkirin û kesên ji rêzê bi devê vekirî dipirsin: "Dikare serdemekê mirovên ewqasî dirinde û hov hebin?"

Her çiqasî Cihû nan û pîvazan bi van çîrokan re dixwin ku di wê serdemê de Nazî bi rola serekî di wan de rabûn, lê ti dûmanek bê agir nabe û divê beşekî mezin yê wan çîrokan rast bin.

Gava nû li kolêja rojnamevanî ya zanîngeha Amsterdam hatibûm wergirtin, bi şewq ji bo dîtina hevpolên xwe diçûm zanîngehê. Ji ber ku min wiha bawer dikir yê ku bixwaze bibe rojnamevan, herî kêm têdigihe ku nabe nijadperest be. Vê pêla min a şêrîn zêde dom nekir û her ji rojên destpêkê ve min ew cudakarî didît ku ji ber paşnavê min ê îslamî û rengê çermê min di navbera min û hevrêyên min yên holendî yên spî de, dihat kirin. Zêdeyî carekê çêbûye ku di sinifê de tenê kursiya li tenişta min vala be, lê xwendekarê holendî baştir didît li ser piyan raweste, ji dêvla ku li tenişta biyanekî ku paşnavê wî îslamî ye, rûne.

Carekê bi hevrêyekî xwe re ji Holenda diçûm Almanyayê. Li ser rê polîsên Alman otomobîla me rawestandin û dest bi lêgerînê kirin. Ji ber çi? Bi gotina wan: "Ne asayî ye ku du kesên serreş bi cil û bergên şîk di otomîbelekê de rûniştibin" min bi hêdî ji yekî ji wan pirsî: "We bawer dikir ku me çi tawanek kiriye?" Bersiv da: "Gumana me hebû hûn terorîst bin."

Kurdên li derve gava digîjin Ewropa hê jî ew bîreweriyên tal ji bîr nekirine ku dagirkerên nijadperestên Kurdistanê ji wan dirust kirin, lê belê li vir tûşî cudakariyeke nû dibin. Gava fêrî ziman bû, hewl dide here nava civaka ku lê dijî û hemû hewldanên xwe dike ku bibe welatiyekî sûdmend. Lê wê çaxê tûşî şokeke kûr dibe gava dibîne ne zimanzanîn, ne xwendin û bawername, ne wergirtina welatînameyê jî nikarin wê rastiyê biguherin ku hertim di çavê Alman, Holendî, Fransî yan Swêdiyekî de biyanî dimîne û nabe welatiyekî tekûz.

Yek ji sedemên gera ciwanên Kurd li Ewropa li dû nasnameya xwe ev e. Min gellek ciwan dîtine ku bi ser de jî nikarin hevokeke rêkûpêk bi kurdî jî bêjin, lê belê xwe ji her Kurdekî din bêtir neteweyî dibînin û bi baweriya wan Kurdistana mezin ne ku çar, lê şeş parçe ne! Ciwanên bi vî rengî li vir ji dayik bûne, mezin bûne û perwerde bûne, lê di çavê hevrêyên xwe yên Ewropî de hertim wek biyaniyan dimînin ku rojek tê û vedigerin welatê xwe.

Her çiqasî pirr girîng e Kurdên rûniştiyên Ewropa xwe di civakên ku di wan de dijîn biguncînin. Herwiha girîng e jî ku bizanin zimanzanî û xwendin û çalakbûna wan di berjewendiya welat û gelê wan yê bindest de ye, lê eger hîle li xwe bikin û wisa bawer bikin ku bûne Wwropî, çewt in. Ji ber ku rast e li vir em hemû li hember yasa wek hev in û nijadperestî qedexe ye, lê ti yasa û hêzek nikare wê hesta nijadperestiyê bimrîne ku di nava hejmareke zêde ya Ewropiyan de heye. Jixwe ger nijadperest jî hebin, çawa Kurdên bextreşî dibin Ewropî?

# Diyarbakirspor piştî 44 salan ket lîga 3.


Diyarbakirspor di sê sezon de li pey hev sê lîg daket jêr

**Amed (Rûdaw) -** Hefta borî roja 20ê Gulanê tîma herî mezin a Bakurê Kurdistanê Diyarbakirspor li Enqerê maçê wenda kir û ji lîga 2. kete lîga 3. Diyarbakirspor demekê di lîga yekem de li hemberê hersê tîmên mezin Galastasaray, Fenerbahçe û Beşiktaşê performansa baş nîşan dabû û hesabê wan di saheyan de xira dikir. Piştî damezirandina 68ê Diyarbakirspor di dîroka xwe ya 44 salî de cara yekem daket lîga 3. Alîgirên Diyarbakirsporê heta dawî jî hêvî dikirin ku Tokatspor jî maça ligel Ofsporê wenda bike da ku ew dakeve lîga 3., lê Tokatspor di deplasmanê de 2-1 biserket. Diyarbakirspor di 25 pûanan de ma, Tokkatspor bû 28 pûan.

Di maça dawî de dijberê Diyarbakirsporê tîma Enqerê Bugsaşspor bû.

Maç li Enqerê hat leyîstin û leystikvanê Diyarbakirsporê Mustafa Kuru di deqeya 6.de gol avêt û Diyarbakirspor 1-0 kete pêş. Lê serkeftin nehat domandin û Diyarbakirspor nekarî êrîşên dijberê xwe rawestîne û di deqeya 25. de Bugsaşspor gol avêt û encam bû 1-1-. Piştî deqeyek golvanê Diyarbakirsporê Mustafa Kuru birîndar bû û Bugsaşspor gola duyemîn avêt. Encama maçê 3-1 bi dawî bû û Diyarbakirspor bi 25 pûanan xatirê xwe ji lîga 2. xwest û cara yekem dakete lîga ku jê destpêkir.

### Ofspor rê da Tokatsporê

Heman rojê Tokatspora ku weke Diyarbakirsporê 25 puanên wê hebûn û dihat çaverêkirin ku ew dakeve lîga jêr, di saheya Ofsporê de 2-1 biserket û cihê xwe garantî kir. Li gor nûçeya Diyarbakirsozê, Ofspor bi leystikvanên xwe yên yedek leyîstiye û lewma maçê wenda kiriye.

### 1968-2012 Diyarbakirspor

Diyarbakirspor di sala 24ê Hezîrana 1968ê de ji yekgirtina tîmên herêmî yên Amedê Yildizspor û Dîclesporê hat damezirandin. Di navbera 1968 û 1975ê de 8 sezon di lîga 3mîn de cih girt û di sezona 1975-1976ê de derbasî lîga 2mîn bû. Salekê şûnde jî performanseke baş nîşan da û derbasî lîga 1. bû. Ew sezon di dîroka Diyarbakirsporê de weke sala zêrîn hat tomarkirin. Diyarbakirspor 3 sezon li pey hev di lîga 1. de ma. Di salên din de jî Diyarbakirspor di navbera lîga 1. û lîga 2. de dadiket û bilind dibû, lê ti carî daneket lîga 3.

## Kurdistan tevlî fînalê nabe



Tîma Kurdistanê li Filistînê tevlî şampiyoniya navnetewî ya Al-Nakba bû ku rasterast ji aliyê FIFA ve tê organîzekirin. Tîma Kurdistanê di yekemîn maça xwe de l igel Morîtanyayê ***3-1*** biserker ket û di maça duyem de jî ligel Endonezyayê ***1-1*** ma û pûanên xwe kirin 4. Di maça sêyem de Tîma Kurdistanê roja 22yê Gulanê ligel Tunusê leyîst û maç 2-1 bi serkeftina Tunusê bi dawî bû. Li gor vê encamê Tîma Kurdistanê ji nîvfînalê derbasî fînalê nebû.

## Fûtbol û dewleta kurdî

**Ednan Seyd Husên**

Li gel zêdebûna pirsgirêkên navbera Bexda û Hewlêrê her ku diçe mabûna vîndarî ya Kurdan li Îraqê kêmtir dibe û egerên cudabûnê li ba desthilata kurdî û kolana Kurdistanî dimîne.

Bingeha rêxweşkirina derveyî ya serekî, xwenasandin e bi welatên din yên cîhanê, baştirîn hoyê îro jî ku tevahiya kanalên cîhanê bê beramber vê reklamê ji te re bikin, hebûna taximekî bihêz yê futbolê ye.

Heftiya borî min gaveke pratîk ya kurdî dît, taximek bi navê taxima Kurdistanê, di şampiyoniyeke navdewletî de li gel taximên 10 dewletên Asyayî û Efrîqî yên deverê Filistîn jî di nav de, dileyîze.

Ev jî tê wateya ku nûçeyên şampiyoniyê bi dehên zimanên cîhanê tên weşandin û ji bo heta hetayê di arşîvan de dimînin, herwiha tevahiya medyayên welatên beşdar jî, gava nûçeyên taximên xwe diguhezin behsa taximekê dikin bi navê Kurdistanê û bi vî rengî jî guhê milyonên kesên din jî li navê Kurdistanê dibe, ku bi raya min nasandin xala girîng ya yekem e di beşdarbûnê de ne ku birin yan windakirin.

Danîna ala Kurdistanê di vê şampiyoniyê de hesta min ya niştimanî tev da. Ev destpêkeke baş e, lê karekî zêdetir dixwaze, yên ku ji bo beşdarbûna Kurdistanê di vê şampiyoniyê de kar kirin, cihê destxweşiyê ne.

Kurdistan çend caran tevî şampiyoniya FIFA bûye, ê ev a dawi rasterast organizasyoneke FIFA ye û yên ku haya wan ji siyaseta futbolê heye baş dizanin, FIFA mezintirîn dezgeh e ku wek NY ya futbolê ye.

Tiştê ku divê Hikûmeta Herêma Kurdistanê bike, danîna stratejiyeke werzişî ye ji bo beşdariya şampiyoniya FIFA ye, yan herî kêm organîzekirina lîstikên dostane ye li gel welat û klûbên mezin yên cîhanê.

Klûba Real Madrid tenê du rojan piştî bidawîhatina gera Spanyayê çû Kuwêtê û li hember du milyon dolaran bi wan re lîst.

Taxima Brazîl jî dehên caran serdana Qeter, Îmarat û Kuwêtê kiriye, yanî anîna klûbeke navdar ya lîga spanî yan îtalî yan almanî ji bilî ku werzişê li Kurdistanê pêş dixe, dibe reklama herî baş ji bo navekî ku dixwaze bi cîhanê re bibe nas, ku Kurdistan e.

Di vê şampiyoniya Filistînê de, hinek medyayên erebî ku çavnebariya peyva Kurdistanê dikin, bi neçarî navê Kurdistanê ket ser rûpelên rojnameyan û bû manşêta nûçeyên kanalên wan, lewma tiştê ku bi hevrikiyên siyasî bi dest ve neyê dikare bi rêya futbolê bê ceribandin. Bila em vê derfetê jî biceribînin.

# Nefel: Stêrkek kurd li asmanên Swedê geş dibe

Zirav û bilind weke şitla rihanê, narîn û nazik wek xifşe xezalê. Porê gurr û hewreşîmî navtenga tenik winda dike. Qirika wek ya qulingê dirêj, çav û biroyên dilkêş, lê ewçend jî awirên zarokane û pak.

Nefel e navê wê, ew weka periyeke ji çîrokên kurdî firyaye û hatiye cem me. Nefel keçeke wek kulîlkeke nûajdayî ye. Ew niha 16 salî ye, lê ji zarokbûna wê de heta niha bala mirovan kişandiye. Hêdema 4 salî bûye dest bi karê modeliyê kiriye. Lê diya wê Emel ji karên modeliyê û navdariyê ditirsiya û nexwest ku keça wê di nav wan derdoran de mezin bibe. Wê dixwest ku Nefela biçûk bi zarokan re zarokbûna xwe bijî. Nefel bi Kurdbûna xwe serbilind e, lê xwe ji Swêdiyan cûda nabîne û dibeje: "Bavê min ji Rojhilat e, ji parêzgeha Saqizê ye. Diya min ji Bakûr e, ji Diyarbekirê ye lê ez li Stockholma Swêdê hatime dinê. Ji ber vê xwe him Kurd dibînim û him Swêdî dibinim."

**Rûdaw: Nefel, cara pêşîn çawa bû ku te dest bi karê modeliyê kir?**
**Nefel:** Dema ez biçûk bûm jî, herkesî li min dinêrî. wê demê ez kerbekerb dibûm. Digotin çavên te rind in, porê te çi dirêj e û destê xwe didan serê min. Wisa hêrs dibûm ku min dixwest porê xwe hemû jê bikim. Lê min bala çend kesên ji şirketên modeliyê jî kişandibû. Hê di temenekî biçûk de karê modeliyê destpêkir. Lê dilê diya min ne aram bû. Ew ditirsiya ku bûyerên nexweş bên serê min. Ji ber tirsa diya min me dest jê berda. Min giranî da xwendina xwe. Heta havîna par, dîsa yekî ez li bajêr dîtim û pêşniyara karê modeliyê kir û dîsa ez vegeriyam karê xwe.

**Tu hê gellekî ciwanî. Eger tu nebûya model, tuyê bibûya çi?**
Ji bilî modeliyê ez dixwazim bibim aktrîs jî û dixwazim dibistana şano û sînemayê jî bixwînim. Niha biryara min ev e. Paşê dikare biguhere.

**Tu bi xwe dikarî debara xwe bikî û xwe xwedî bikî?**
Naaa... niha jî diya min li min dinêre, ew karên ku ez dikim hê gellek pere nayîne û ez jî zêde dema xwe nadime karê niha. Dibistana min ji pere giringtir e. Ku min bixwesta pere bianiya, ezê biçûma derveyî welêt û li wir kar bikira. Lê him ji ber nearamiya dilê diya xwe, him jî ji ber xwendina xwe, niha naxwazim wan karan bikim.

*Diya Nefelê li rexê me rûniştiye û carcaran ew bersîva pirsan dide, di çavên wê de gellek hest dixuyên. Tirsa ku keça xwe rojekê winda bike, serbilindî, dilşadî û hêviyên ku ew û keça xwe rojekê vegerine welatê xwe û jiyana xwe li wir bidomînin. Lê Nefel hînî sermaya Swêdê bûye û ji germa Diyarbekirê tirsiyaye.*


Nefel: Wisa hêrs dibûm ku min dixwest porê xwe hemû jê bikim.



Digotin çavên te rind in, porê te çi dirêj e û destê xwe didan serê min.

**Tu qet xeyala vegera welêt dikî, dixwazî rojekê li Diyarbekirê bijî, kar bikî û di nav navdarên kurd de bi navûdeng bibî?**
Bêguman ez dixwazim him di fîlmên kurdî de, him yên swêdî de kar bikim, lê bawer nakim li wir bikarim bijîm. Berê ez li gor xeyalên diya xwe tevdigeriyam, lê piştî ku ez çûm wir, min zanî ku nabe ez li wir bijîm. Germ e.

**Jiyana navdarî, ya lûks ji gellek keçan re gelekî balkêş tê, lê piştî demekê ji vê jiyanê têr dibin û nikarin tiştek din bikin. Tu ji vê yekê re çiqasî amade yî?**
Jiyana lûks ewqasî min nakişîne, ez dixwazim wek keçekê normal, jiyanake normal bijîm. Lewra giranî didim ser dibistana xwe û dixwazim karekî min bi bingeh û ewle hebe. Jixwe diya min jî herdem li ba min e û min tenê nahêle ku biryareke çewt bidim.

*Hevpeyvîn: Nesrîn Rojkan*




# *Koma Dîlan* nûnera Kurdan ya karnevalê ya

**Berlîn (Rûdaw) –** Di rojên navbera 25 û 28ê Gulanê de li Berlînê karnevala kulturan tê lidarxistin û Koma Dîlan jî li ser navê Kurdan tevlî karnevalê dibe.

Karnevala kulturên cuda îsal roja 27ê Gulanê bi meşa komên çandî li Hermannplatzê dest pê dike û Koma Dîlan û komeke ji Brazilyayê bi hev re serkêşiya meşê dikin.

Yek ji endamê komeleya kurdî 'Kurdistan Kultur- und Hilfsverein e.V' Fevzi Aktaş, ku berpirsiyarê projeyan e, bo Rûdawê daxuyand ku ev 15 sal in ew tevlî vê karnevalê dibe û got, "lê komeleya me ji sala 1974ê ve tevlî çalakiyê dibe."

Aktaş got ku "Koma Dîlan li ser navê gelê kurd tevlî dibe. Weke her salê KOM-KARê barê giran xistiye ser milên xwe û Komciwan-Berlîn îsal bi me re bûye hevkar û sponsoriya me dike."

Aktaş hêvî dike di salên bê de komên kurdan zêdetir bibin û ji bo projeyên wiha hevkariya komele û saziyên kurdan çêbibin.

Wek ku Aktaş diyar kir 20 ciwan îsal tevlî karnevalê dibin û hemû ne Kurd in. Aktaş dibêje "Ji bo her salekê em grûbeke nû amade dikin lê navê me her Koma Dîlan e, îsal di nava 20 ciwanan de Alman û Efgan jî hene."

## Piştî Bexçê Bihuştê jiyana malbateke Kurd dike fîlm

# Fîlmên wî li ser Kurdan, piştgirî ne ji Kurdan


Mano Xelîl ji bo kişandina fîlmê xwe bexçeyek kirê kiriye û 3 sal di nava penaberan de maye

Derhênerê Kurd Mano Xelîl ji Rojavayê Kurdistanê ye ji sala 1996ê ve li Swîsreyê dijî û di demeke kurt de karî wek derhêner, kameraman û filmçêker ji xwe re navekî çêke. Çendîn berhemên wî xelatên cîhanî stendine. Roja 9ê Gulanê li Brûkselê fîlmê Mano Xellîl 'Unser Garten Eden' (Bexçê Bihuştê) hêjayî xelatê hat dîtin û xelat danê. Galaya xelatê di avahiya Parlamena Ewropayê de hat lidarxistin û Serokê Parlemana Ewropayê Martin Schulz xelat dan. Ev 25 sal in ku ev xelatên ji bo întegrasyona li Ewropayê tên dayin. Xelîl ji Rûdawê re ragehand 4 produksiyonên swîsreyî mesrefên fîlm girtibûn ser xwe. Xelîl rexne li xwedîderketina sazî û girseya Kurdan li Ewropa dike û bibîr dixe ku di nîşandana filmê wî li Berlînê tenê 5 Kurd amade bûne û got, “Ez nikarim ji bo kişandina fîlmekî piştgiriya aborî ji Kurdan bistînim, lê ez niha li ser jiyana Kurdekî Swîsreyê ku salê 20 ton hingiv ji mêşan çêdikin, fîlmek dikişînim.”

**Hûn dikarin hinek behsa cûre û naveroka fîlmên xwe bikin?**

Mano Khalil: Ev fîlm dikeve nav beşê filmên doku-dramayan, çîrokên 5 malbatên biyanî ne ku li Swîsreyê bicîh bune. Ji 5 netewan 5 malbat, ango Cezayirî, Polonî, Îtalî, Kroatî û Kurd. Ev mirov mecbur man dev ji welatê xwe berdin û ji bo jiyanek baş ku li Swîsreyê bibînin, yan jî ji ber zulm û zorê li welatên wan, berê xwe dan penabertiyê. Roj bi roj Swîsre ji bo wan mirovan bu 'welat' lê ti car xewna vegerandina welatên xwe ji bîr nekirine. Hinekan dixwestin zû dewlemend bibin û vegerin welatê xwe, lê mixabin xewnên dewlemendiyê roj bi roj di fabrîk û tunêlên Swîsreyê de hatin windakirin û vegera welat ma xewnek bo wan. Niha her yek ji wan ji xwe re 140 m² erd kirêkiriye û kirine bexçe, ala welatê xwe li ser daleqandine û windabûna welatê xwe di 140 m2 erdê Swîsreyê de dîtine.

**Gelo ji bo dewlemendiyê bidin naveroka film we 5 malbatên ji netewên cuda hilbijartin?**

Belê. Ev fîlm mîkrokozmozeke ku tevahiya cihanê sembolîze dike, mikrokozmozek ku tê de ol, milet, kultur û ziman bi aşîtî bi hev re dijîn. Her ku fîlm bi xwe drama ye, lê gellek rewşên komêdî jî tê de hene. Hêsir bi keniyê re tên. Min bi xwe jî ji bo serpêhatiya wan ji nêz ve nasbikm û baweriyê bidim wan 3 salan min jî erdek kîre kir.

**Mirov dikare bêje ku her malbatek mijarek penabertiyê sembolîze dike?**

Belê wisa ye, malbata Îtalî wek karker ji bo demek kar bike û wegere hatine, lê li vir mane. Malbata Polonî jî ji rejîma berê ya sosyalîst reviyabûn. Ew mirovê Afrikî ku wek yekemîn reşik bû û berî 50 salan hatibû Bernê; ji bilî wan malbateke Kurd û Kroatî jî di fîlm de cîh digrin. Herwiha gellek ji neteweyên din jî hebûn û her yek ji wan malbatan ji welatê xwe perçeyek anîbûn.

**Ev milet ji taybetmendiyên xwe cuda dibin, lê nabin Swisreyî jî...**

Rast e. Mijara sereke ew bû ku ew mirov li welatê xwe hinek kesên din qebûl nakin, mînak wek Tirkek ku li Tirkiyeyê Kurdekî qebûl neke, lê li vir çawa bi awayek aramî ji hev re bi tolerans in, her yek ji wan li bexçeyê xwe ala xwe didaleqîne. Li vir dibin cîranê hev û ji hev aciz nabin. Ez dixwazim bidim zanîn ku dewleta Swîsreyê çawa bi awayek demokratîk maf dide herkesî û kes ji kesî natirse, ti kes ne di bin bandora kesekî din de ye her kes di bin destê demokrasiyê de ye. Lê li cihê ku hejartî, zilm û zordarî li ser xelkê hebe hingê ew berê xwe didin olê û dibin fundamentalist. Swîsre welatekî mînak e 4 zimanên fermî lê tên axaftin, rê dide ku her kes xwe azad bihesibîne û azad bijî.

**Piştgiriya filîmê te kê kir?**

Min di aliyê aborî de ti pirsgirêk nekişand, 4 tv produksiyona film girtibûn ser xwe ku di nava wan de 3sat û 3tv jî hebûn. Ji xwe wan serî li xelata CIVIS dan. Ev xelat bi beşdarbûna 25 welatên Ewropî û Swîsreyê pêk tê. 631 bername, fîlm û dokumanterên ku di tv de hatine nîşandan serî lê dabûn, ji wan tenê 6 hatin pejirandin: 3 belgefîlm û 3 jî fîlmên dramayê.

**Li sînemayan de eleqeyek çawa ji bo fîlmê we hat nîşandan?**

Fîlm 17 heftiyan li sînemayên Swisreyê bieleqeyek mezin hat temaşekirin. Di sala 2010 û 2011ê de xelata sînemayê ya Kantona Bernê, Xelata Perle jî stend û weke yek ji baştirîn fîlmên `Swiss 2011' hatibû pejirandin. Herwiha di kanala 3sat de jî hat nîşandan.

**Gelo hûn nafikirin bi taybeti li ser Kurdan fîlmekî çêbikin?**

Çawa naxwazim! Lê belê pêwîstî him bi alikariya aborî û hinek jî bi ya manevî heye; di van herdu aliyan de jî kesên ku piştgirî bidin min gellek kêm in. Sala borî fîlmê min li Berlinalê hat nîşandan, lê tenê 5 Kurd beşdarbûn. Ez dibêjim Kurdên me yên Ewropayê bila rojekê kebabê nexwin bila biçin sînemayê. Sedhezarî zêdetir Kurd li Berlînê dijîn, tenê 5 kes hatibûn. Xebata min hertim li ser meseleya Kurdan e, ez dûrî welat im lê kurdîtî hertim li cem min e. Ez niha fîlmekî din ku li ser jiyana Kurdeki ji Bakurê Kurdistanê ye ku nêzî 20 ton hingiv çêdikirin û her tişt, milk, mal û zarokê xwe windakirin. Ji ber şerê li Kurdistanê tê meşandin ew kes niha dîsa li Swîsreyê mêşan xwedî dike û dewlet alîkariyê dide wî.

*Hevpeyvîn: Zelal Çelik*

# Meş giha Almanyayê




**Koln (Rûdaw)-** Fîlmê derhêner Şiyar Abdî yê bi navê Meş li seranserê Almanyayê dikeve vîzyonê. Fîlmê ku li Nisêbînê hatiye kişandin behsa 12ê Îlona sala 1980ê dike. Fîlm li Mîhrîcana Fîlman ya Antalyayê ya Navnetewî de xelata muzîka herî baş wergirti bû.

Fîlmê bi navê Meş ku derhêneriya wî Şiyar Abdî û listîkvaniya wî jî Selamo kirbû ji roja 24ê Gulanê ve li sînemayên Berlîn, Koln, Frankfurt, Munchen û gellek bajarên Almanyayê tê nîşandan. Fîlm berê li Tirkiyeyê û Bakurê Kurdistanê û di gellek festîvalên fîlman de hatibû nîşandan û xelat wegirtibûn.

Meş behsa bûyerên 12 Îlonê dike û li navçeya Mêrdînê Nisêbînê derbas dibe. Qehremanê fîlm jî dinek bi navê Xelîlo ye. Xelilo ji aliyê malbata xwe û cîvakê ve nayê ecibandin. Tenê zarok pê re hevaltî dikin. Li aliyekî Xelîlo û li aliyê din giraniya darbeya leşkerî tê behskirin. Herkes ditirse, ti kes dengê xwe dernaxe. Lê Xelîlo bi cîgareya xwe leşkeran protesto dike. Sahneya şeqama fermandarê leşkerî jî mînakek balkeş e. Fîlm hem di warê siyasî de hem jî di warê cîvakî de peyamên girîng dide…

Derhênerê fîlm Şiyar Abdî bang li Kurdên li Almanyayê kir û got, “Daxwez û hêviya me ew e ku herkes bila biçe fîlm temaşe bike. Bi vî helwestê em ê gellek kêfxweş bibin.”

**Bajar, cih û dem**

**Aachen:** Apollo ji 24ê Gulanê ve
**Dortmund:** Sweetsixteenkino 14.6.-20.6
**Dresden:** Casablanca 31.5.-6.6.
**Hamburg:** 3001 Kino 4.6.
**Hannover:** Kino im Künstlerhaus 25.5.-29.5.
**Saarbrüken:** Filmhaus 13.5.06.6
**Munchen:** Werkstattkino 7.6.-10.6
**Berlîn:** Eiszeit 24.05
**Frankfurt:** Mal seh'n 25.05-30.05
**Koln:** Fîlmplatte 31.05
**Nurnberg:** Filmhaus 24.05
**Regensburg:** Wintergarten 24.05

# Îrlenda Bakur û Kurdistan nêzîkî hev dibin







**» Serokê şanda bazirganî ya îrlendî:** Me jî wekî Kurdan 30 salî şer û nakokî dîtin.

**Hawar Ebdilrezaq** Hewlêr

Îrlendî dibêjin wekheviya dîrokê û hêviyên wan yên siberojê ligel Kurdistanê wisa kiriye ku hejmareke zêde ya şîrketên hilberînê yên îrlendî bên Herêma Kurdistanê. Li gor gotina serokê şandeke bazirganî ya îrlendî, di hundirê 4 salên borî de 40 şîrketên îrlendî hatine Herêma Kurdistanê.

Roja 13ê vê mehê, şandeke bazirganî ya Îrlenda Bakur bi nûnertiya 18 şîrketên taybetmend di warê çandinî, turîzm, xwendina bilind, enerjî û avakirinê de serdana Herêma Kurdistanê kirin. Şanda îrlendî ragihand, ji bo xurtkirina pêwendiyên bazirganî û aborî yên di navbera herdu aliyan de hatine.

Serokê şandê û berpirsê Rojhilata Navîn li ajansa hilberînê ya Îrlenda Bakur, Neol Johnston, ji Rûdawê re daxuyand: "Armanca vê serdanê pêşxistina têkiliyên aborî ye, ev şanda bazirganî ya çaran ya Îrlenda Bakur e ku tê Kurdistanê û nûnerên şîrketan dixwazin şirîkekî kurd bibînin ji bo li Kurdistanê dest bi kar bikin."

Îrlenda Bakur yek ji wan dewletan e ku Qeraltiya Hevgirtî, ku wek Brîtaniya jî tê naskirin, pêk tînin; lê parlemento û aboriyeke wê ya serbixwe heye û di warên xwendina bilind, çandinî û avakirinê de bihêz e û aboriya Îrlenda Bakur bêtir pişta xwe bi warê çandiniyê girê dide.

Di hundirê çar salên borî de nêzîka 40 şîrketên Îrlenda Bakur hatine Kurdistanê û par jî şandeke bazirganî ya Herêma Kurdistanê serdana Îrlenda Bakur kir. Johnston got: "Em û Herêma Kurdistanê li hev diçin, di aliyê erdnîgarî de em welatekî biçûk in û welatekî mezintir me birêve dibe. Me jî wekî we şer û nakokî dîtin û dora 30 salan dibe şer û şîdet li Îrlenda Bakur hebû. Lê niha em di qonaxa aştî û aramiyê de ne û vê aştiyê jî derfetek daye me ku sektoreke me ya turîzmê ya zindî hebe."

Ji bo xurtkirina pêwendiyên herdu aliyan, hikûmeta Îrlenda Bakur biryar da nûnerekî xwe yê taybet li Kurdistanê deyne û ev nûner jî kesekî Kurd e ku 10 sal in li Brîtaniyayê dijî û navê wî Nazim Mistefa ye. Nazim Mistefa ku derçûyê beşê endaziyarî ye, ji Rûdawê re got: "Em bi niyet in serdana wezaretan bikin, bi mebesta zanîna dema derketina tenderan, daku em jî şîrketên Îrlenda Bakur agahdar bikin ku ew jî tevlî proseya tenderan bibin." Herwiha daxuyand ku di bernameya wan de heye ku her sal du caran şandên bazirganî yên Îrlenda Bakur bînin Herêma Kurdistanê.

Derheqê wê yekê de, ka heya çiqasî pirsa kurd û Kurdistanê di nav civaka îrlendî de tên naskirin, Johnston got: "Kurd li Îrlenda Bakur tên naskirin, ji ber ku wezîrên Herêma Kurdistanê serdana Îrlendayê kirine û li wir bi kanal û rojnameyan re peyvîne, herwiha şîrketên îrlendî jî yên ku serdana Herêma Kurdistanê kirine, behsa vê herêmê kirine."



# Petrola xam a Herêma Kurdistanê bo Tirkiyeyê tê şandin

**Hawar Ebdilrezaq**
**Hêvîdar Ehmed**

Di "Konferansa Navnetewî ya Enerjiyê" de ku ji aliyê navenda lêkolînên stratejîk ya teknîkî û aborî ya Tirkiyeyê STEAM li Hewlêrê hatibû amadekirin, Serokê Hikûmeta Herêma Kurdistanê Nêçîrvan Barzanî ragihand pêwendiyên Hikûmeta Herêma Kurdistanê li gel Tirkiyeyê di warê enerjiyê de derbasî qonaxeke nû bûne. Wezîrê enerjiya Tirkiyeyê jî daxuyand, di demeke nêzîk de çûna petrola xam ji Kurdistanê bi rêya tankeran û ji bo mebesta rafînerkirinê û dîsa vegerandina wê ji bo Kurdistanê dest pê dike.

Konferansa ku bi navê 'Ji Hewlêrê bo Cîhan, rêya enerjî û Herêma Kurdistanê ji bo geşbûnê' dest bi karên xwe kir û du rojan domand. Hejmareke zêde ya şîrketên cîhanî yên petrolê tê de beşdar bûn.

Wezîrê enerjiya Tirkiyeyê Taner Yildiz ku cara yekê ye bi awayekî fermî serdana Herêma Kurdistanê dike, got: "Tirkiye niha li Kolombia û Venezuela karê hilberînê dike, çawa Herêma Kurdistanê ku çend km ji me dûr e destê me negihiyê, Herêma Kurdistanê xwedî derfeteke baş e ku cihê xwe di qada navnetewî de bibîne."

### Hewramî: Di 2013ê de rasterast petrol ji bo derve tê şandin

Serokê dezgeha STEAM Mithat Balkan got: "Tenê şîrketên tirkî di warê xaz û petrolê de li Herêma Kurdistanê bi buhayê 8 milyar Dolaran karê hilberînê kirine û ev jî gaveke mezin e ji bo pêşxistina sektora petrolê li Herêma Kurdistanê."

Wezîrê Samanên Xwezayî yê Hikûmeta Herêma Kurdistanê Aştî Hewramî di konferansê de daxuyand, tê pêşbînîkirin petrola Herêma Kurdistanê bi rêya hêla nû di tebaxa 2013ê de bigihe Tirkiyeyê: "Em jî berpirs dibin ji şandina derve ya petrola xwe û petrol jî her wek petrola Îraqê dimîne."

### Îraq mesrefên şîrketên biyanî nade

Aştî Hewramî got ji ber di 10 mehên borî de hikûmeta Îraqê xerciyên şîrketên biyanî ku petrolê li Herêma Kurdistanê berhem tînin, nedane, wezareta samanên xwezayî ya Herêma Kurdistanê di Nîsana îsal de şandina petrola xwe ji bo derve ragirt. Hewramî got: "Hikûmeta Îraqê rojane 700 hezar bermîlên petrolê rafîner dike û li gor yasa jî divê Bexda ji sedî 17 ji berhemên rafînerkirina wê petrolê bide Herêma Kurdistanê ku rojane digihe 119 hezar bermîlan, lê hikûmeta Îraqê tenê 35 hezar bermîl ji me re dişandin, ev meheke nema wan jî dişîne."

Navbirî da zanîn ku, eger Bexda berhemên petrolê nede Herêma Kurdistanê, neçar dibin petrola xam bişînin derve da ku berhemên petrolê ji bo Kurdistanê dabîn dikin: "Ji bo vê gavê jî me bi Tirkiyeyê re li hev kir ku petrola xam bişînin wir, ji wir jî berhemên petrolê ji bo Kurdistanê dabîn bikin."

## Bayê buhara erebî û dewletbûna Kurdistanê



# *Başûr* û *Bakur*...
# ...rêyek ji bo yekbûnê

**Mihemed Emîn Pêncwînî**

Buhara erebî eger em xwe jê dûr bigirin û wiha bihesibînin ku pêwendiya bahoz û guherînên buhara erebî bi me ve tine û wisa texmîn bikin ku bandorê li ser me nake, ev xwe gêjkirineke ji guherînên dîrokî ku qewimîn û hê jî diqewimin. Eger bi berçavka lêkolerekî tûnisî yan misrî jî bixwînin, ev jî xwexapandine, anjî dixwazin xelkê pê bixapînin. Herçiqasî bi baweriya min ev Tsunami heya niha di qezenca îslama siyasî û şepêlên hişk de ye, nemaze Îxwan û Selefî û mezhebê sunî. Wek çawa şepêla hişk ya şiî tevlî berxwedan û şoreşa gelên Îranê bûn, piştre jî dest danîn ser, wisa jî li hinek welatên erebî yên sunî wê ji bo çend salan bi alozî û pirsgirêkan desthilatê birêve bibin, vêce ji ber ku nikarin hemû pêdiviyên milet bi cîh bikin, wek azadî û nan û nehiştina bêkarî û gendeliyê, di xalekê de diteqinin û hingî milet û ciwanên ku bi hêviya azadî û nan hatine ser cadeyan û jiyana xwe gorî kirin, li wan diqulibin û reya xwe didin guherandin.

### Gelo Başûr û Bakur cemser in?

Em Kurd li Başûrê Kurdistanê herdem gilî dikin û dibêjin petrol ji bo hemû miletan bûye nîmet, lê ji bo Kurdan bûye bextreşî û malwêranî. Gelo ev pêvajo her wiha didome, yan vê carê petrol dibe rizgarkerek û me rizgar dike? Tecrûbeya Başûrê Kurdistanê ber bi geşbûn û pêşketinê diçe, di keftûlefta zêdebûna bingehdanîn û avakirin û dariştina netewebûn û dewletbûnê de ye. Herçiqasî dewletbûn li Başûrê Kurdistanê guherîneke dîrokî ye, di şert û mercekî hestyar û aloz yê navçe û cîhanê de dike çêbibe, lê ev grew e, qanikirina hiş û zihniyeta xelkê bi bawerîanîna bi serxwebûnê yekemîn gav. Pêwîstiya wê bi hevgirtina mala kurd û hizra Kurd û amadebûn ji bo hemû egeran, amadekariya diravî û xorakî û bergirî û bidestanîna soza hêzên mezin û xwe guncandin li gel dagirkerên Kurdistanê (dewletên herêmî); Ev in şertên bingehînî ku Başûr berbi wê yekê dibin ku bibe cemserekî girîng û karîger ji bo siberoja Kurdan. Belê ew hemû bûyer û guherîn û pêşketinên ku li Başûr di demeke kêm de di warê aborî û avakirin û çand û ber bi pêşveçûna hizra neteweyî li Başûr bi cîh hatin, ev hemû destkeftiyên vî beşê Kurdistanê ne, ku dikaribû ji wilo baştir jî bihatana kirin, eger ew hemû tiştên bêwate û bê akam û malwêraniyan rû nedaba ku di şerê xwekujiyê de heya 10-12 salan domand. Bi rastî ev xaleke neyênî û birîneke kûr e di dîroka nû ya gelê me de. Jixwe eger vana rû nedabana, cemserbûna Başûr direjî nav beşên din yên Kurdistanê dibû û bihêztir û çirisandîtir dibû. Mixabin, qet nayê înkarkirin ku Başûr xaleke girîng e di stratejiya Amerîka û Ewropayê de, lê bi awayê ku berjewendiyên wan diparêze. Tesadûfeke dîrokî bû ku berjewendiyên hêzên mezin û Kurdan hev girtin di hilweşandina dîktatorê Îraqê de. Vê rewşê azadî ji Başûr re misoger kir, ku mixabin heya niha me nikariye wek pêwist sûd jê wergirin.

Ev nayê wateya ku şoreşa qeral Mehmûd, damezrandina yekemîn komara kurd, şoreşên Barzan, şoreşa Îlonê û heya digihe kîmyabaran, Helebçe, Enfal û koçberî bên piştguhkirin, ew berxwedan û qurbanîdana xwînrijî û berxwedana serhişk ya xelkê Başûr kevirê bingehînî yê cemserbûnê ye.

Cîh û pêgeheke stratejîk ya girîng ya Başûrê Kurdistanê li ser nexşeya Rojhilata Navîn heye. Jeopolîtîkî, erdnîgarî û jeo-ekonomiya başûrê Kurdistanê xwe ferz kiriye, divê li ser vê nexşeya nû cîh bigire û bê destnîşnakirin wek Kurdistan, ne ku bakurê Îraqê.

Başûrê Kurdistanê welatekî tijî xêr û bêr e, eger bi awayekî zanistî û bi başî bê bikaranîn, dikare bibe depoya xwarina deverê. Bêguman ji bo aliyê turîzmê jî em dikarin bikin bûka rojhilat, êdî ji bo gerê pêdiviya me bi Libnan û hinek welatên Ewropayê jî nebe. Bêguman ev bi gotinan tenê nabe.

Herçiqasî binerda Başûr jî bi xaz û petrolê tijî ye û eger bêjin Başûr li ser goleke petrolê ye, dibe ku gaza wê bi qasî Sîbîryayê be, yan hinekî jê kêmtir be, ji bilî hesinên ecêb û xerîb, wek zêr û zîv û hesin, ûranium, fosfat û krîstal. Ev wê xalê dirust dikin di dariştina nexşeya nû ya Kurdistanê de ku cîhê xwe yê nû bigre, bi şertekî ku mejiyê siyasî yê kurdî bizane çawa ligel van şert û mercên nû yên cihan û deverê tevbigere. Ev tişt û hinekên din Başûr dikin cemserekî nû.

### Bakurê Kurdistanê yan Kurdistana navendî

Eger xelkê Başûr şanaziyê bi şoreşa Şêx Mehmûdê nemir û mîrnişînên Baban û Soran û Behdînan bikin, mafê Bakur e jî ku şanaziyê bi dîroka mîrnişînên Botan û Bedirxaniyan û şoreşa Şêx Seîdê Pîran û Seyid Reza û Îhsan Nûrî Paşa û Şêxê Nehrî bikin û giyanê xwe yê netewperest û welatperwer û şoreşger bi wan coş bikin. Dîroka xebata berxwedêr ya Bakur ji bo bidestanîna mafên Kurdan vedigere nêzîka sedsalan berê. Bênavber xebitîne ji bo rizgariya welat û daxwaza mafên neteweyî yên Kurdan li Kurdistana navendî. Di vê cemserê de jî zincîreke serhildan û şoreşên li pey hev yên miletê kurd berdewam bûne, ku dora 25 raperînan rabûne, heya digihe şoreşa nû û modern a PKKê ku şoreşa PKKê bi giştî 20-25 milyon Kurd ji wê gora bênav derxistin ku Mistefa Kemal piyê xwe danî ser gorekê û got: "Ev gora Kurdan e û êdî zindî nabin." Belê her ev Kurdê ji gorê derxistî ye ku hikûmetên li pey hev yên Tirkiyeyê têk birine û car caran jî derbên tûj li wan dane, ku her ev Kurd in ku rojane li bajarên Bakur û li Tirkiyeyê dehên hezaran tên ser caddeyan û bi awayekî sivîl û şaristanî daxwaza mafên xwe yên rewa dikin. Di nav avahiya parlemento û li jêr banê parlementoyê bi dilêrî û wêrekî daxwaza azadiya Kurdistanê dikin, her ew in jî ku pirs û doza kurd gihandine ser maseya Ewropayê, bi rêya revendên mezin ku li welatên Ewropayê hene. Salane çendîn festîval û meşên mezin dikin ku dehên hezarên Kurdistaniyan di wan de beşdar dibin. Li yek ji bajarên mezin yên Ewropayê yan li paytexteke Ewropayê hezarên kesan bi dengekî daxwaza azadiya Kurdistanê dikin. Bêguman Ewropî û medya û kesên xwedî wîjdan hisabê wan hezarên kesan dikin ku têne ser caddeyan. Carekê guhê min li gotineke serokwezîrê Almanyayê Helmut Kohl bû ku li parlementoya federal ya Almanyayê peyvek pêşkêş dikir, got: "Behitî me ku PKK, ku partiyeke qedexekirî ye li gor yasaya Almanyayê, ji nişka ve li stadyûmeke welatê me festivalekê saz dike û 150 hezar Kurdan kom dike. Nizanim dezgehên me yên ewlehiyê li kû derê ne."

Bakur mezintirîn rûberê erdnîgariya Kurdistanê ye, 20-25 milyon Kurd lê hene, şoreşeke wê ya çekdar û modern ya sivîl ya 20 salî heye. Ev cemser bi Tirkiyeyê ve hatiye kirin, Tirkiye jî endama NATOyê ye, çaremîn artêşa wê ya bejayî heye, tekane cîhê piyê Amerîka ye li Rojhilata Navîn, xwediya bingeha Încirlîk e ku Amerîka ji vê bingehê nexşeya siyasetên xwe li deverê diresimînê, lewma CIA û Mossadê hevkariya MITê kirin ji bo girtina birêz Abdullah Ocalan.

**Tesadûfeke dîrokî bû ku berjewendiyên hêzên mezin û Kurdan hev girtin di hilweşandina dîktatorê Îraqê de. Vê rewşê azadî ji Başûr re misoger kir, ku mixabin heya niha me nikariye wek pêwist sûd jê wergirin.**

Eger Başûrê Kurdistanê ji bo cemserbûna xwe şanaziyê bi Kerkûkê û çemê Behdînan û Soran û Sîrwan bike, li Bakur jî Dicle û Firat û petrola Batmanê hene. Bakur vêga bûye sêlika nanê Tirkiyeyê, projeya GAPê 120 bendavên mezin û biçûk li xwe digire, beşê herî zêde li Kurdistana navendî hatine xilaskirin û tên xilaskirin. Yanî dikarin bi ava şêrîn Rojhilata Navîn av bidin. Carekê Turgut Ozal, wê demê serokwezîrê Tirkiyê bû, li parlementoya Tirkiyeyê got: Ereb naxwazin petrolê bifiroşin me, lê divê bizanin ku rojek tê bermîlek petrol bi bermîlek ava şêrîn didin me. Ew av ji çiyayên Bakurê Kurdistanê diherikin, pirraniya kanî û çavkaniyên avê ji xeleka çiyayên Cûdî û Zagrosê tên ku dergûş û cîhê hebûna Kurdan e.

Tirkiye li gor destûrê heya vêga welatekî sekûler e, herçiqasî di

# HRW: Hikûmeta Malikî girtinên keyfî dike

**Ednan Husên**

Saziya mafên mirovan HRW di rapora xwe ya dawî ya li ser Îraqê de behsa binpêkirinên tund yên mafên mirovan dike û dibeje “hikûmeta Îraqê bi awayekî neyasayî girtîgeha Kamp Onur birêve dibe, ku divabû ev girtîgeh di sala 2011ê de bihata girtin. Lê li wê zindana neyasayî çendîn zindanî tê de bi awayekî nemirovane tên îşkencekirin û tevgereke xirab bi zindaniyan re tê meşandin.” Rapor ji bilî wê leşkergeha amerîkî ya kevin, behsa du zindanên nehênî yên din li navçeya kesk dike.

Şepêla Sedr: 7 hezar endamên me girtî ne

Li Îraqê agahiyên hûr derbarê hejmara zindaniyan û zindanan tine, lê tenê alîgirên Sedr dibêjin ku 6-7 hezar endamên wan ji aliyê hikûmeta Malikî hatine girtin. Li gor agahiyên serokê komîteya mafê mirovan li parlementoya Îraqê, 31 hezar girtî li Îraqê




hene. Endamê komîteya mafê mirovan li parlementoya Îraqê, Usame Cemîl, zanyariyên rapora HRW piştrast dike û belgeya rastiya raporê jî bi wê yekê tîne ku rêgirî tê kirin li komîteya wan, ku serdana girtîgehên asayî dikin, ne yên nehênî. Usame Cemîl herwiha got ku li Îraqê girtîgehên gerok jî hene bo guhastina zindaniyan, daku saziyên navnetewî yan komîteya parlemento wan nebînin.

Hikûmeta Bexda li ser zarê berdevkekî xwe tometên HRW red dike û behsa wê yekê jî dike ku ew cîhên di raporê de hatiye destnîşankirin “berî 8 mehan hatiye girtin”. Elî Debax herwiha got jî: “HRW di van zanyariyan de şaş çûye. Îşkence carnan dibe, lewma hikûmeta Îraqê dora 60 hezar karmendên wezareta navxwe ji kar dûr kirine.”

destûrê de Kurdbûn qedexe ye, zimanê kurdî û navê Kurdistanê qedexe ne. Lê di yasayên wan de hinek derz û kun hene ku Kurd dikarin di wan de lîstikên siyasî bikin, vaye 35 endamên parlementoyê yên BDPê xebatê ji bo mafên gelê kurd dikin. Ji aliyekî din ve Tirkiye dixwaze tevlî Yekîtiya Ewropayê (YE) bibe û bibe endameke aktîv di YE de. Jixwe eger wiha bibe, 20 milyon Kurd dibin welatiyên Ewropayê. Me berê digot ev ji bo Kurdan ne baş e, lê piştî du salan ji lêkolîneke kûr me kifş kir ku eger Tirkiye bikeve nav YE, Kurd qezenc dikin û Tirkiye jî neçare prensîpên Kopenhagenê bi cîh bike ku di xalekê de wekheviya mafê hemû netewe û ol û mezheban qebûl dike û daxwaz dike ku hemû kes azad bin ku bi zimanê dayikê binivîsin û bixwînin. Xaleke din ya wan prensîpan demokratîzekirina welat û azadiya takekes û bîr û baweriyê ye, herwiha bi vî rengî sînorê Ewropayê digihe Zaxo û Qamişlo û Makoyê. Her çiqasî heya niha astengî pirr in, nemaze ji aliyê Klûba Xiristiyanî, û rayeke din di nav YE de heye ku dibêje hinek deverên Tirkiyeyê ne amade ne ku bibin welatiyên ewropî, ev jî derfeteke din e ji bo Kurdan ku daxwaza konfederaliyê li Bakurê Kurdistanê bikin.

Bakurê Kurdistanê, Kurdistana navendî ye û her guherîneke erênî lê bê kirin, bandoreke girîng û baş li ser beşên din yên Kurdistanê û Kurdên li derve jî dike. Ev herdu cemser (qutb) ku du cemserên bingehînî yên bizava azadîxwaz a gelê Kurdistanê ne, hemû Kurd wan wek qiblegeha xwe dibînin. Erkên dîrokî û neteweyî wiha li wan dike ku nêzîkî hev bibin û li ser xalên hevbeş ku xizmeta şoreşa gelê Kurdistanê dike li hev bikin û bernameya hemahengî û çalakiyên sivîl û siyasî û dîplomasî, yên eşkere û nehênî, birêve bibin.



Rast e, pêwendiyên eşkere û nehênî yên van herdu cemseran bi dewletên herêmî û hêzên mezin re hene û dixwazin van pêwendiyan biparêzin û bi pêş bixin, xizmeta ajendayên xwe bikin, gilî û gazin jê tie, lê bi şertekî ku ne li ser hisabê cemserê din be û ji çarçoveya hurmeta exlaqên neteweyî û niştimanî dernekevin. Nabêjim ev herdu cemser bi hev ve bên girêdan, ji ber ku di vê qonaxê de ev ne mimkin e.

### Li ser rêya dewletbûnê…

Rast e, cemserê başûr di qonaxa dewletbûn û avakirin û geşbûna aborî û kulturî û sivîl de ye, tevlî hemû zêdegavî û gendeliyên ku hene, rêya dewletbûn û serxwebûnê hatiye meşandin û dewletên dinyayê, di nav wan de dewletên dagirkerên Kurdistanê jî, ji bo parastina berjewendiyên xwe yên siyasî û aborî bi neçarî ev rewşa nû qebûl kirine. Ew hemû konsûlxaneyên ku li Başûr hatine vekirin, saziyên aborî, şîrketên mezin ji Exxon Mobil bigire heya digihe kompaniyên Îran û Tirkiyeyê li Başûr mijûlî kar in, petrol û xaz û zêrên binerd dertînin û difiroşin, ku xwîn û henaseya xelkê Kurdistanê ye, ji bilî du firokxaneyên navdewletî ku rêya asamanan ji wan re vala kirine, ev material û bingehên dewletbûnê ne. Lê mixabin pirraniya herî zêde ya van şîrketan yên du dewletên dagirkerên Kurdistanê ne ku qet naxwazin dewleta kurdî ava bibe û heya bikarin astengiyan li ser rêya wê derdixin.

**Bi baweriya min, dem hatiye ji bo nêzîkbûna van herdu qutban. Gava yekê jî girêdana kongreyeke neteweyî ye ku her parçe li gor hêz û rewşa xwe cîh tê de bigire û peyva xwe bêje.**

### Projeya federal a Ozal

Nizanim projeya Turgot Ozal yê rehmetî ye ku tê zindîkirin, yan ev proje zindî bûye û haya me jê tine. Projeya Ozal bi kurt wiha ye: Wîlayeta Mûsil heya digihe Kerkûk û Xaneqînê, yanî xeta petrolê, bi Tirkiyeyê ve bê girêdan, hinek navçeyên dûrîdest yên Bakur bixin ser û bi navê “federaliya kurd” ligel Tirkiyeyê federalî bê dirustkirin.

Di vê projeyê de her behsa erdnîgarî û xak hatiye kirin, behsa mafên neteweyî, yan dîrokî û kultûrî yên Kurd û Kurdistanê hatine piştguhkirin. Armanca Ozal ev bû: Bi petrola bakurê Îraqê Tirkiyeyê dikin biheşt, bêkarî û hejarî tê de tên nehiştin, ji bo vê yekê jî Amerîkiyan şîret dikin ku razîbûna şahê Erebîstana Siudî yê wê demê Melîk Fehed wergire ku rê lê negire. Di bersivê de Şah Fehed dibêje: Rê nadim du parçeyan ji welatê erebî bikirtînin û ji xwe re bibin.

Cemserê bakur di şoreş û berxwedanerke berdewam û xwînrijî de ye li hember sîstemeke nîv-eskerî ku di qanûna wan ya serekî de Kurdbûn û navê Kurdistanê û zimanê kurdî qedexe ne. Şoreşa bakur ne tenê şoreşeke çekdarî ye, wek hinek kes rexneyan lê digirin, lê şoreşeke siyasî û kultûrî û sivîl e jî. Vaye li parlementoya Tirkiyeyê 35 kes hene ku daxwaza mafên Kurdan dikin. Partiyeke ku 20 sal in di şer de ye, bikare bi hilbijartin 99 şaredariyan li Kurdistana navendî bi dest bixe, qey ev ne karekî şaristanî û sivîl e. Herwiha li pirraniya bajar û bajarok û gundên Bakur dibistanên nehênî û eşkere vekirine, daku nifşê nû fêrî xwendin û nivîsîna zimanê kurdî bikin.

Girêdayî karê siyasî jî, pêkanîna parlementoya derveyî welat li derve û kongreya neteweyî (KNK) li Ewropayê wek navnîşaneke siyasî ye ji bo Kurdan û damezrandina sê kanalên asmanî, damezrandina sedan komeleyên kultûrî û siyasî li bajar û navendên Ewropayê, vekirina enstîtuya kurdî li Berlînê, akademiya hunera kurdî li Bonnê, bi sedan kovar û rojname bi zimanê kurdî û biyanî, ku ev şoreşa çandî ne û samanên me yên neteweyî diparêzin. Pêwist e li vir bêjim ku damezrandina yekemîn kanala asmanî ya kurdî şoreşeke medyayî û kulturî bû di mejiyê Kurdan de. Di encama van çalakiyan de dora 12-13 hezar çalakvanan, jin jî di nav de, di zindanên Tirkiyeyê de ne, ku di nav wan de şaredarên hilbijartî û endamên parlementoyê jî hene, nemaze jî birêz Ocalan ku bi zindana heta hetayê hatiye mahkûmkirin û hezarên endamên PKKê ku bi 15-30 salan hatine mahkûmkirin.

Bi baweriya min, dem hatiye ji bo nêzîkbûna van herdu qutban. Gava yekê jî girêdana kongreyeke neteweyî ye ku her parçe li gor hêz û rewşa xwe cîh tê de bigire û peyva xwe bêje.

Bawer nakim şer û hevrikî careke din di navbera van herdu cemseran de rû bide, ji ber ku dagirkeran hişt ev tişt biqewimin ji bo jinavbirina şoreşa gelê kurd û destkeftên ku li Başûr pêk hatine. Ji bo girtina rê li ber serxwebûnê fîta şerê navxwe yan şerê Kurd û Kurdan pêxistin ku hêviya Îran û Tirkiyeyê bû, yên ku destê wan hebû di şerê navxwe li Başûr û şerê Bakur û Başûr de û dezgehên wan yên sîxuriyê roleke çalak û bêmirês lîstin di talkirin û sivikkirina pîroziyên şoreşê û lîderên hêzên siyasî yên kurdî.

Ez li Ewropa bûm, gava bi navê parlementoya derveî welat me berê xwe dida her helkefteke siyasî. Digotin hûn miletek in, hêjî tekûziya we ya neteweyî nebûye û ne amade ne xwe birêve bibin. Bersiva me jî nebû. Lê vêga piştî guherînên li cîhanê û li deverê û li Kurdistanê rû dane, mentalîteya xelk û lîderên kurd û cemawer û rewşenbîran jî guheriye, ji aliyekî din ve jî dagirker û dijmin jî bêhêvî bûn, ji ber ku qonaxê ferz kiriye ku ev herdu cemser - Bakur û Başûr- pêwîstiya wan bi hev hebe.

Ramana welatparêzî û neteweperwerî û nêzîkbûna hêzên siyasî û hevqebûlkirin di geşbûn û pêşkeftinê de ye, lewma ev herdu cemser divê pirr nêzîkî hev bibin.

## Roboskî

Ahmet DERE

Van rojên dawî li Tirkiyeyê komkujiya Roboskî tê niqaş kirin. Piştî agahiyên ku di rojnameya amerîkî Wall Street Journal de hatin weşandin, li Tirkiyeyê cur be cur derdor derbarê komkujiya Roboskî de nîqaşan dikin. Li gorî piraniya "rewşenbîr" û herwiha derdorên siyasî, divê di demeke zûtirîn de artêşa tirk berpirsyarên heman komkujiyê eşkere bike û ew derkevin pêşberî dadgehê. Bê guman ev daxwazeke di cîh de û ehlaqî ye û ji roja destpêkê vir ve malbatên 34 kesên ku hatî kuştin jî tînin ziman.

Dema mirov li asta niqaşan dinêre, mixabin durûtiyeke mezin dixuyê. Pirraniya "rewşenbîr" û derdorên siyasî ku dixwazin rastiya bûyerê eşkere bibe, xwedî nêzîkatiyeke rast nîn in. Mirov dikare bêje di vî warî de tenê rayedarên artêşa tirk û herwiha Recep Tayyip Erdogan rast diaxivin. Du roj berê, beriya ku li balafirê siwar bibe ûbiçe Pakistanê, Recep Tayyip Erdogan wiha dida xûyan: "Me hin sînor ji artêşê re xet kiriye, rayedarên wê di nava wan sînoran de tişta ku pêwîst e dikin. Bûyera Roboskî jî di çarçoveya heman sînoran de pêk hatiye." Ez dixwazim ji derdorên ku ketine nava niqaşan bipirsim; gelo ev daxuyaniya Recep Tayipp Erdogan tê çi wateyê ?

**Piştî van daxuyaniyên rayedarên dewleta tirk, êdî ti wate tine ku mirov li berpirsyarên komkujiyê bigere. Bi awayekî eşkere dewleta tirk berpirsyartî girtiye ser xwe.**

Ji roja ku heman komkujî pêkhatî û vir ve pirraniya Kurdan dibêjin ku ev kiryar bi zanebûn ji aliyê artêşa tirk ve pêk hatiye. Û dîsa pirraniya Kurdan dibêjin ku heman kiryar baş diyar dike ku artêşa tirk hemû Kurdan ji xwe re dijmin dibîne. Em hemû dizanin ku di nava 34 kesên ku hatine kuştin de kesên ji dewleta tirk re xizmet kirine jî hene. Yanî ji bo artêşa tirk hemû Kurd wek hev in.

Digel daxuyaniya Amerîkiyan ku di Wall Street Journal de hate weşandin, rayedarên artêşê û yên hikûmeta tirk bi îsrar dibêjin "komkujiya Roboskî li gorî agahiyên me pêk hatiye". Piştî van daxuyaniyên rayedarên dewleta tirk, êdî ti wate tine ku mirov li berpirsyarên komkujiyê bigere. Bi awayekî eşkere dewleta tirk berpirsyartî girtiye ser xwe.

Piştî hewqas zelaliyê, divê tenê ji dewleta tirk were xwestin ku ew bi awayekî eşkere qebûl bike ku li dijî gelê kurd di nava şer de ye. Li gorî qanûnên şer berpirsyarên kiryaran nayên mehkeme kirin. Ya ku rayedarên artêşa tirk û herwiha serokwezîr dibêjin jî, bi awayekê îndîrekt, ev e.

Li gorî min niqaşên ku niha bi rêya weşanan û ya çapemeniyê têne kirin, zelaliya ku heyî şêlû dikin. Dewlet dibê "Ez hemû Kurdan dijmin dibînim" lê belê derdorên ku van nîqaşan dikin jî dibêjin "Na lo, şaş hatiye ziman, dewlet Kurdan weke dijmin nabîne, tenê kêmasiyek hatiye kirin û 34 kesan jiyana xwe ji dest dane, bila çend leşker derkevin pêşberî dadgehê ev mijar were girtin."

Ez bawer im rastiya komkujiya Roboskî bi hemû aliyên xwe ve derketiye holê. Pêwîstî bi niqaşan nake. Eger divê tiştekê were kirin, ew jî têkoşîn e. Çawa ku divê Geliyê Zîlan, Dêrsim, Mereş, Helebçe, bûyera 33yan û komkujiyên din neyên ji bîr kirin, Roboskî jî wisa ye.

## Roja Zimanê Kurdî û "Hawar" a me

Bayram Ayaz

Ji sala 2006ê û vir de roja 15ê Gulanê li Bakurê Kurdistanê wekî "Roja Zimanê Kurdî" tê pîroz kirin. Ev biryar Komisyona Ziman û Çandê ya Kongreya Neteweyî ya Kurdistanê (KNK) girtibû. Bi nêrîna min jî, ev biryareke rast e. Roja 15ê Gulanê di dîroka zimanê kurdî de rojeke nîşane ye, destpêka xebat û xizmeteke pîroz e.

Çi ye ev xebat û çima pîroz e?

Roja 15ê Gulana 1932yê li Şamê kovara HAWAR dest bi weşanê kir. Nemir Mîr Celadet Elî Bedirxan dest bi xebata zimanî ya bi tîpên latînî kir. Hawar di dîroka xebatên zimanî de destpêka şopeke taybet e û bûye ekolek. Li Bakurê Kurdistanê û li cîhên din ku kurdî bi tîpên latînî dinivîsin, di şopa Hawarê de xebatên xwe dimeşînin. Cureyê rastnivîsinê û rêzimana ku em îro bi kar tînin, hîmê wê nemir Mîr Celadet di Hawarê de daniye.

Hawar kovareke politik, wêjeyî û zimanî bû. Ziman û wêje hebûna xelkekî ne. Kar û xizmetên ji bo ziman û wêjeyê were kirin, raste rast ji bo parastina gel û welat e. Xelkên ku zimanê xwe ji bîr kirine, hatine pişaftin û di nav rûpelên dîrokê de wenda bûne. Hebûna Kurdan ji ber mayîna ziman û çanda wan e.

Hawarê çend xizmetên girîng pêkaniye. Em bînin bîra xwe: Piştî şikesta serhildana Agiriyê, rejîma kemalîst zêde kefxweş bûbû. Di rojnameya wan Cumhuriyetê de, di karîkatûrekî de, çiyayê Agiriyê wek goristanekê nîşan dabûn û li ser nivîsandibûn: "Muhayel Kurdistan burada gömülüdür" (Kurdistana ku we xeyal dikir li vê derê binax e.)! Di demeke wisa de nemir Mîr Celadet Hawar deranî, ji xeyala Kurdan re bû çirayek. Mîrê zimanê kurdî di Hawarê de wisa nivîsandiye:

"Hawar dengê zanînê ye. Zanîn xwenasîn e. Xwe-nasîn ji me ra rêya felat û xweşiyê ye."

**Wek goristanekê nîşan dabûn û li ser nivîsandibûn: "Muhayel Kurdistan burada gömülüdür" (Kurdistana ku we xeyal dikir li vê derê binax e)!**

Hawarê em hînî zimanê kurdî û zanîna dîrokî kirin. Hawar ji welatperweran re bû serkaniya hêvî û wêrekiyê. Para Hawarê di xwe-nasîna rewşenbîrên bi taybetî Rojava û Bakurê Kurdistanê de pareke mezin e. Vê xwe-nasiyê li ber me rêya azadiyê û felatê xweş kir, ku em li ser wê rê berdewam dimeşin.

Hawar bû mertal û zimanê kurdî parast. Mîr Celadet li gorî kaîdeyên zimannasiya hevdemî û bi tîpên latînî rêzimanê kurdî nivîsî. Di dîroka miletan de danîna rêziman û çêkirina alfebeyan bûyerên wekî şoreşan in. Divê em qedr û qîmeta van xizmetan qenc bizanin.

Roja parastina zimanan ji aliyê UNESCOyê ve roja 21ê Sibatê hatiye danîn. Em wê rojê jî pîroz bikin. Lê biryara 15ê Gulanê wek Roja Zimanê Kurdî, hewce ye ku wek rojekî neteweyî bê pejirandin û pîroz kirin.

Dema ev bîr û hizrên derbarê Roja Zimanê Kurdî û Hawarê de di mejiyê min de derbas dibûn, ez li zimanê kuçe û kolanên Amedê fikirîm, ku berî saetekê ez hinekî xengîn kirim. Li sûka Amedê carnan gotinên kurdî jî tên guhên mirov. Lê mixabin tirkî hê serdest e û zimanê bazarê ye. Hawar, Hawar, Hawar... Li Ameda dilê me divê êdî kurdî bibe zimanê serdest. Dem hatiye û dubuhure jî. Divê ez gotineke camerekî ji civata me jî li vê nivîsê zêde bikim: Dibêje: "Ev du sal in, li Amedê kurdî her diçe zêdetir tê axaftin". Ev jî nîv mizgînî û hinekî hêvî ye.

## Bila biyanî nebe malxwê malê!

Kawe Emîn

Kêşeyên di navbera hikûmeta Herêma Kurdistanê û hikûmeta Îraqê de roj bi roj aloztir dibin û daxuyaniyên berpirsên herdu aliyan nîşan nadin ku kêşe di demeke nêzîk de tên çareserkirin. Axir kêşe ne yek û du ne û ne kêşeyên salek û du salan in, lê ev çend sal in komî ser hev bûne. Dibe ku mezintirîn çewtiya stratejîk ya şoreşa Îlonê di dema îmzekirina peymana 11ê Adara 1970î de ew bûbe ku razî bûn dema 4 salan deynin ji bo cîhbicîhkirina peymanê. Îraqê jî xwe di wê demê de çekdar kir û pêwendiyên xwe yên herêmî û navneteweyî bi awayekî dariştin ku ne di berjewendiya Kurdan de bûn.

Piştî rûxandina rêjîma Baasê yek ji tiştên ku berpirsên kurd şanazî pê dikirin avakirina "Îraqa nû" bû ku tê de qaşo mafên Kurdan bi rêya destûrê parastî ne. Amerîka yekem tişt ku li Îraqê kir hilweşandina artêşa Îraqê bû. Lê niha, piştî 9 salan, Îraqê artêşa xwe bi awayekî damezrandiye û bi çekên modern çekdar kiriye ku di siberojê de qey tenê ziyana wan ji bo Kurdan hebe, yan na Îran pişta xwe didiyê, ji ber ku ew hemû mar ji bo rojeke wisa perwerde kirine. Derbarê welatên cîran yên din jî ti metirsiyeke wan nabe, Sûriyê wek niha bimîne yan biguhere bandoreke mezin li ser hikûmeta niha û bê ya Îraqê nake. Tirkiye jî ku hevbenda Amerîka ye, karekî nake ku ligel Îraqê bikeve şer heya ku ji artêşa wê bitirse!

Ligel hemû metirsiyên navxweyî û derveyî li ser Başûrê Kurdistanê, hêjî Kurd ne xwediyên gotareke siyasî ya hevgirtî ne. Bila em ji ragihandina kurdî bigerin ku bi giştî ti hêleke sor ji xwe re nedaniye, nemaze di pirsên neteweyî de. Gava behsa dewleta kurdî tê kirin, hezar şêr û roviyan tînin. Axir dewleta kurdî vêga bê damezrandin, yan her demeke din, mafekî rewa yê neteweya kurd e û pêwist nake analîza wê jî bê kirin, vêce her kes û aliyek li pişt vê daxwazê be ne girîng e. Di rewşeke wisa de, vêga kevne-Baasiyên kurd ku Xwedê tenê dizane çawa şirîkên Saddam bûn û hatine ser sifreyê, ji nişka ve bi nêrdewanê ve hilkişiyan jor û ne ku dan pêşiya Kurdên neteweyî lê dan pêşiya şehîdan jî û gihiştin gupîtka desthilata kurdî!

Vêga ew bûne şêwirmend û rawêjkarên Kurdayetiyê ku eger neyên hefsarkirin ne dûr e bi fûtên wan alozî û dûbendiyeke mezin li Başûrê Kurdistanê derkeve ku ne tenê dewleta kurdî lê tiştê heye jî ji dest here! Kesê carekê xiyanet kiribe, dikare careke din jî bike, lewma ne dûr e ku hinek kes û grûp di nav eşîran de ji niha ve pêwendî bi Malikî re kiribin, yan yên ku berê li ser şûrê Qadisyeya Saddam xwe hildidan.

Ji aliyekî din ve bi navê berevaniya olê êrişî parlementoyê dikin. Ecêb e, nivîskarek û kovarek tiştekî ne maqûl dikin, lê belê hinek "meleyên" hîç nezan pirsê mezin dikin û pişt re xelkê tînin ser caddeyan û Kabul û Hewlêr li wan dibe yek.

Tu dibêje tesadufî bû sîxurekî wek Qanîferd ku di heman demê de di kovareke kurdî de bi navê lêkolîneke dîrokî tê, ji bo derxistina aloziyan di navbera Kurdên du parçeyên Kurdistanê de, destê xwe dide du sembolên girîng yên Kurdayetiyê. Erê xêr e di vê demê de Qanîferd ji Tehranê û di kovarekê de bizava azadîxwaza kurd û hemû partiyên kurdî wek "terorîst" wesf dikirin, lê belê biryara rijandina pereyan bi ser de hat standin, wek bi xwe dibêje. Balkêş e, Baasî ji aliyekî û sîxurên din ji aliyekî din ve avê li aşê dagirker dikin, jê wêdetir jî herdu alî "Kurdayetiyê" difiroşin me, li jêr navê azadiya ra û nerînan.

Bi rastî nizanim, wek helbestvanek dibêje: "Em li vî alî yan wî alî ne." Lewma baştir e ku em dev ji destkeftên demkî berdin û hemû kurdperwerên rasteqîne herin aliyekî. Hikûmeta Herêma Kurdistanê jî divê xwe bi tevahî yekalî bike û bibe sîwanek ji bo hemûyan.

# Bo kêmkirina azaran 10 adetên rojane



## 1 Bi tevger û sporê îndorfîna bêtir bistîne

Mimkûn e azar bibe sedem ku tu tevnegerî, lê tu eger tevnegerî û sporê nekî, mimkûn e tu taybetmendiya nerm, sivik û xurtbûna masulkan jidest bidî, ev jî azarê xirabtir dike. Tevger eger kêm jî be dibe sedema deranîna Îndorfînê, bi vê yekê jî hesteke xweş pêk tê û mêjî jî çavkaniya hestkirina bi azarê digire. Ji doxtorê xwe pirs bike ka kîjan curê sporê bo te baş e.

## 2 Ji vexwarinên alkolîk dûrkeve

Jib o azarên te aram bibin, herwiha goşarên derûnî li ser te kêm bibin, pêwîstiya te bi xeweke baş a şevê heye. Tevî ku vexwarinên alkolîk alîkariya te dikin ku razêyî, lê alkol di dema hersbûnê de xeweke nearam çêdike û girîngiya razanê kêm dike û mimkûn e te ji xewê hişyar bike jî. Encama vê jî xeweke nearam e.

## 3 Cigarekişandinê biterikîne

Hin kes di dema hebûna azar û pirsgirêkan de hest bi bînvedaneke demkî ya kurt dikin û dixwazin cigare bikişînin. Lê rastiya meselê ew e ku cigare kişandin di domandin û zêdekirina azarê de rolek mezin dileyîze. Ev tişt proseya çakbûnê hêdî dike û zîrveya xwînê xirab dike. Herwiha metirsî heye bo peydakirina pirsgirêkan di dîskan de û derketina azara binê piştê. Pirsa doxtorê xwe bike da rêya terikandina cigareyan nîşanî te bide, ti carî jî nederenge bo terikandinê.

## 4 Bi xwarinên baş û bi sûd alîkariya laşê xwe bike

Eger azareke domdirêj bi te re heye û tu bixwazî bi hemû îmkanên xwe alîkariya laşê xwe bikî, tek rêya vê yekê meşandina sîstemekî xwarinê yê tendirust e ku kontrola rêjeya şekirê xwînê bike û parastina laşê mirovan bike ji kîloyên zêde. Bi vê yekê jî metirsiya nexweşiyên dil kêm dibe.

Xwarinên dewlemend bi keskatî, fêkî, genim û ceh proseya herskirinê hesan dike. Herwiha dûrketina ji proteîn û qelewiyan sûdmend e.

## 5 Alîkariya doktorê xwe bike

Diyarkirina cih, dem û maweya azarê, herwiha sedemên tundbûn û arambûna wê, wisa dikin ku doktorê te zûtir û hesantir nexweşiya te fêm bike û tu jî hesantir û bileztir ji azara xwe rizgar bibî. Di dawiya rojê de 10 pileyan bo azara xwe û demên wê deyne, herwiha li ser kaxizekê jî binvîse û dema tu serdana doktorê xwe dikî vê jê re bêje.

## 6 Bo plana bînvedana xwe sînorekê deyne

Tu bi guhdarîkirina rewşa xwe ya fîzîkî û romatîkî dikarî baştir ji azarên xwe rizgar bibî. Mimkûn e bînvedana te di cihekî aram de hestekî xweştir bo te peyda bike û kêm azarê bide te weke çûyîna konsêrekê, mesajeke aram, xwarina ligel çend hevalên hezkirî. Mimkûn e ev bînvedaneke baş be û azarên te ji bîra te bibin.

## 7 Hizra wê neke

Hizirkirina ser azarê wê tundtir dike û divê tu xwe mijûlê hin tiştan bikî ku te ji hizirkirina azarê dûrdixin, here baxçeyekê, guhdariya hevalekî xwe bike, xwe hînî lîstikekê bike, eger te nekarî azara xwe kontrol bikî, hewl bide bînvedana xwe kontrol bike.

## 8 Dermanên xwe nas bike

Vê yekê bizane ka ev dermanên tu wan bikartînî çi bo te dikin û çi li te dikin, pirsyar bike û bizane ka bandoreke din a van dermanan heye yan na. Paşî xwe ronî bike himber van hemû çareseriyên cuda ku bi kêrî azara te tên û ji doktorê xwe bipirse. Ev jî bo vê yekê ye ku mêjî aram bibe û bikare çalakiyên asayî bike. Mimkûn e curekî derman bo te baştir be ji curekî din.

## 9 Tu ne bi tenê yî

Bi giştî yek ji sê kesan ji derdê azara domdirêj dinale, dûrketina ji tenêbûna berdewam girîngtirîn adet e ku te hîn dike çawa ligel azarên xwe tevbigerî, bêje heval û kesûkarên xwe ka tu hest bi çî dikî, tu eger ji wan re nebêjî ew hest bi te nakin, doza alîkariyê bike.

## 10 Bêhndana xwe kontrol bike

Henasekirina (bêhn dan û standin) kûr û aramkirina mêjî bo maweyekê, ev herdu bo laşê me hunerên pêşkêşkirina bînvedanê ne û alîkariya kêmkirina azaran didin. Niha çavên xwe bigire û hêdî henaseyeke kûr bikşîne û hêdî henaseya xwe berde jî.



## Xaçepirs

**Çeperast:** 1-Terikandin, terk lêxistin, nîvşikestî – Hesinê ku kêr û meqes pê tên seqakirin -tûjkirin- (berepaş). 2- Ne erê ne na, bê qerar – Na, ne xêr, nabe (berepaş) – Ap, mam – Gazind, întîzar, gilî. 3- Cûreyek xezalên kedî – Qurmik û bedena qalind a gîha û nebatan – Bilind, paye, qedirbilind. 4- Bi Tirkî Yekîtîya Milletan (berepaş) – Talde, ciyê bi sî û hênik, kozik – Xanî, apartiman. 5- Li Latîn Amerîkayê welatek (berepaş) – Nehat, li paşe, nayê. 6- Navekî jinan, dikeve serê hespan (berepaş) – Cûreyek tîpên nivîsandinê, tîpên meyildar. 7- Dezgeh û komên karkirên serdema navîn. Ev grûp li seranserê cîhanê belav bûye, wek Cihû (Yahûdî) tên naskirin û pir bi dizî dixebitin – Nexêr, na, nabe. 8- Ezman, feza, kaînat – Şîrketa balafirên Taylandê (berepaş). 9- Navekî jinan, jina dilorîne (berepaş) – Bi Tirkî hejmara 6 (şeş). 10- Notayek (berepaş) – Markayek trimbêlan.

**Serejêr:** 1-Karxaneya dermanan, ciyê derman lê çêdibe, eczexane. 2- Bi "Erebî" ve girêdayî – Nebatek bi bêhn û şîfadar. 3- Ne mê, ne jin, mêr (berepaş) – Li Tirkiyê bajarek. 4- Pêveka pronavan – Di kaxizên qelemaçan de hejmara yek (1) – Ji tevahîya malzar û hucreyên bedenê re tê gotin – ji derveyî hucreyên zayendî- (berepaş). 5- Teyrikek spî û ji werdekê mezintir (berepaş) – Kevnare, kevneşopî, ne nûjen û hemdemî (berepaş). 6- Maddeyek kîmyevî û sotedar. 7- Navejî jinan, jina wek mêran – Ji bo, ji ber (berepaş). 8- Sîxurek Ingilîztanê ku bi rêzefîlman meşhûr bûye, 007 James .... (berepaş) – Teref, hêl, ber (berepaş). 9- Garantî, piştrastî. 10- Redkirin, qebûlnekirin – Razan, paldan, nivistin. 11- Nayê, nehat, li paş e. 12- Hewa, oksîjen, gazek xwezayî. 13- Tişt, hacet, alet, cil û berg. 14- Ava madenî, ava bi gaz. 15- Piştî dua û nimêjê tê gotin. 16- Avik, sperm, ava cinsî.

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | | | | | | | | | | ■ | | | | | |
| 2 | | | | | | ■ | | | ■ | | | ■ | | | | |
| 3 | | | | ■ | | | | | | ■ | | | | | | |
| 4 | | | ■ | | ■ | | | | | | ■ | | | | | |
| 5 | | | | | | | | ■ | | | | | | | | |
| 6 | | | | ■ | | | | | | | | | | | | |
| 7 | | ■ | | | | | | ■ | | | | | | | | |
| 8 | | | | | | | ■ | | | | | | | | | |
| 9 | | | | | | ■ | | | | | | | | | | |
| 10 | | | ■ | | | | | | ■ | | | | | | | |

### Bersivên hejmara 147

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | K | A | F | I | R | ■ | R | ■ | N | E | Q | I | Ş | A | N | D |
| 2 | A | R | E | ■ | A | N | Î | G | A | V | ■ | R | A | Z | A | N |
| 3 | V | Î | R | A | J | ■ | O | N | Y | E | Z | ■ | N | A | M | E |
| 4 | Î | N | S | A | N | Î | ■ | E | R | ■ | A | N | O | N | Î | M |
| 5 | L | ■ | E | ■ | Î | Ç | A | R | A | K | | | | | | |
| 6 | K | A | N | T | ■ | P | R | A | T | A | | | | | | |
| 7 | I | N | D | E | K | O | ■ | G | E | R | | | | | | |
| 8 | R | A | ■ | M | Û | Ç | I | N | G | ■ | | | | | | |
| 9 | I | N | C | A | S | ■ | R | E | E | L | | | | | | |
| 10 | N | E | R | M | Î | N | ■ | R | V | O | | | | | | |

Rojbûn an jî şahiya te ye û tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî? Ji me re bişîn: info@rudaw.eu

# Ronî bû 6 salî




Silav û hurmet,
navê min Ronî ye, roja 06.05.2012ê ez bûm 6 salî. Ez Kurd im û Kurdistanî me û dayik û bavê min ji Başûrê Kurdistanê, ji bajarê Dihokê ne.
Niha em li bakurê Almanyayê dijîn. Ez carekê çûme Kurdistanê, gellekî xweş bû ji bo min...
Ez kurdî û almanî jî dizanim, di pêşerojê de ez dixwazim bibim doktorê çavan, daku arîkariya pîr û kalên welatê xwe bikim.
Spasiya rojnameya Rûdawê dikim

## Karîkator




## Kêmxwînî...

Kêmxwînî bandorek neyênî li geşkirina zarokan dike, metirsiya nexweşiyan zêde dike, balkêşî û fêmkirinê kêm dike. Divê xwarinên ku bi maddeya hesin dewlemend in, weke goşt, masî, mirîşk, hêk, dims, tehîn, baqilên hişk, ji zarokan kêm nebin. Ligel van xwarinan, eger herwiha xwarinên bi vîtamîn C dewlemend, weke bacanên sor, bîber û renga reng sebze, werin bikaranîn, ewê serfkirina xwarinan jî hîn baştir bibe û bandorek erênî li ser tendirustiya zarokê bike.




## Neynûkxwarin

*Gelo zarok ji ber kîjan sedeman neynûkên xwe dixwin?*

Stres di vir de faktorek sereke ye. Stres bi zarokan re çêdibe, eger ew ji aliyê malbata xwe ve rastî helwesteke çewt bên; bikevin bin barên giran; xebata dayîka wan; destpêkirina dibistanê. Ev hemû faktor dibin sedemên destpêkirina neynûkxwarinê.
Eger malbat bi zarokê xwe re têkiliyeke tundurist pêk neyîne, zarok xwe bi neynûkxwarinê îfade dike. Wate, ev dibe şiklê têkiliya zarok bi malbatê re. Eger tirsa ji dibistanê û stresa bi zarokê re zêde be, di nav malbatê de nexweşî pirr be, ev dibe sedema depresyonê li cem zarokê. Ew depresyon jî neynûkxwarinê dike kronîk. Eger neynûkxwarin bibe kronîk, ew pirr metirsîdar dibe, lewra divê zarok here cem doktorê derûnî (psîkyatrî).
Dema zarokê dest bi neynûkxwarinê kir, baş e ku mirov pêre biaxive, jêre bêje ku ev ne baş e, ev zirarê digihîne wî/wê.

*Eger ku axaftinê feyde nekir, divê em çi bikin?*

Emê binêrin zarok kengê neynûkên xwe dixwe, emê bala wî bikşînin ser tiştekî din û emê wî pîroz bikin, pesnê wî bidin. Dema ku zarok radikeve, em dikarin lepikekî têxin destên zarok, anjî tiştekî ku zirarê nedê zarok, em dikarin di destê zarok de bidin.

*Tiştê din jî:*

Em bi xwe ji zarokên xwe re bibin mînak. Emê bi xwe neynûkên xwe nexwin. Bi pirsgirêkên zarokên xwe re emê têkildar bin, emê bi tundî nêzîkî wan nebin. Emê wan ji stresê dûr bixin. Dema zarok ji stresê dûr ket, neynûkxwarin pêk nayê.



Amedekirina rûpela zarokan: Sevda Şafîk